


# Li Cizîrê kî zarokan dikuje?

Ji çalakiyên ku bi mebesta protestokirina êrîşên li ser Kobanê yên di 6 û 7'ê cotmehê destpêkiribûn vir de li Cizîra nevçeya Şernexê bûyerên ku bi şaîbe didomin gihîştin asteke tirsnak. Di bûyerên ku li navçeyê heta niha qewimîn de 5 jê zarok, 6 kes hatin kuştin û rûdanên bi şik şêniyê navçeyê bêzar dikin. Li aliyê din daxuyaniyên ku ji aliyê tevgera kurd, AKP û derdorên oldar ve têne ragihandin li ser heman peyamê disekinin û herkes di wê fikrê de ye ku kuştin û rûdan ji aliyê kes an jî deverên ne zelal ve têne kirin. R 04 - 5

BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 37 19 - 25 Çile 2015 basnews.com

LaWje
SELÎQE
Pira dengên Colemergê R16

# Hewlêr li lûtkeya dîplomasiyê



Rêveberiya Herêma Kurdistanê di warê dîplomasiyê de hefteyeke têr û tije li dû xwe hişt, vexwendina Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya 51. Konferansa Ewlehiyê ya ku wê di meha Sebatê de li Munîh'ê pêk bê û Lûtkeya Davos'ê, Başûrê Kurdistanê ber bi lûtkeya siyasî ya dinyayê ve dibe. Beşdariya Barzanî ya lûtkeyên ewlekarî û aboriya cîhanê diyar dike ku RHK di siyaseta global de êdî aktoreke çalek e. R02-3

Di vê navberê de serdanên payebilind yên dîplomasiyê li Hewlerê didomin. Serdanên Hewlêr'ê yên Wezîra Parastinê ya Elmanya'yê Ursula von der Leyen û Nûnerê Taybet ê Tekoşîna Kureyî ya li Dij DAIŞ'ê yê Serokê DYA'yê Obama, General John Allen bi daxuyaniyên xwe bûn sedema nirxandinên ku êdî Kurdistan hevpareke girîng a stratejiya ewlehiya global e.

## Kurdistan bi vejena xwe dikare bibe dewleteke sereke

Pisporê Biyokîmya ya Cemserê Prof. Murat Ardelan diyar kir ku ji roja serxwebûn hatiye rojevê vir ve, bi vê mijarê re girêdayî, xalên çavkaniyên wek petrol, gaz û ava Kurdistanê jî her balê dikêşînin ser xwe û got: "Ev dewlemendiyên Kurdistanê, bi kapasîteyên xwe, dikarin wê bigihînin pileya welatên pola yekemîn." R10 -11

## Bajarê Serhedî Îdir

R09

## Parîs Şaristanê romantîzmî

Nameyê Parîsî ke vajîya moda, huner, kultur, romantîzm, eşq ameyêne re merdimî vîrî. Parîs ke va verê verkan şoreşê Fransa, komunê Parîsî û tabî ke serbestîye ameyêne vîra merdimî. Nê çend serranê peyênan de malesef êdî bi suîkastan, bi katlîaman qalê Parîsî beno. R14

## Kurdên Rojhilat di rêya yekîtiyê de ne



Hevgirtina hêzen kurd ya ku li Başûr û Rojavayê Kurdistanê li hember DAIŞ'ê didome arîşeyên di navbera partiyên kurdan de ji holê radike û wan nêzîkî hev dike. Partiyên Rojhilatê Kurdistanê yên ji ber hin boçûnên cûda ji hev qetiyabûn li ser yekîtî û hevgertinê destbi komcivînan dikin. Partiya Demokrata Kurdistana Îranê û Hizba Demokrata Kurdistanê li bajarê Koyê Herêma Başûrê Kurdistanê dest bi komcivînan dikin. R08

## Hosteyê kedîkirina Şahmaran

R15

# Hewlêr li lûtkeya cîhanê

Niqaşa serxwebûna Kurdistanê ku demeke dirêj e di rojevê de ye û piştî ku DAIŞ di hemû eniyan de ber bi şikestine ve diçe, Herêma Kurdistan dikeve fetlanekek nû. Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) di warê dîplomasiyê de hefteyeke têr û tije li dû xwe hişt, vexwendina Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ya 51. Konferansa Ewlehiyê ya ku wê di meha Sebatê de li Munîh'ê pêk bê û Lûtkeya Davos'ê, Başûrê Kurdistanê ber bi lûtkeya siyasî ya dinyayê ve dibe. Serdanên Hewlêr'ê yên Wezîra Parastinê ya Elmanya'yê Ursula von der Leyen li Nûnerê Taybet ê Tekoşîna Kureyî ya li Dij DAIŞ'ê yê Serokê DYA'yê Obama, General John Allen bi daxuyaniyên xwe bûn sedema nirxandinên ku êdî Kurdistan hevpareke girîng a stratejiya ewlehiya global e.

Allen û Leyen, piştî serdanên xwe, tekoşîna ku Pêşmerge li dij DAIŞ'ê dide destnîşan kirin û peyamên weke; "Tekane hêza ku dikare bi DAIŞ'ê re şer bike kurd in" dan, ev peyam wek rîwangeya siyaseta dinyayê ya Kurdistan kete rojevê. Ji aliyekî ve Hêzên Pêşmerge di heman demê de, di gellek eniyan de derbên mezin li DAIŞ'ê dixe, li aliyê din jî tê ragihandin ku paqijkirina Şengal, Mûsil û Guwêr a ji DAIŞ'ê pir nezîk e.

Allen û Leyen, piştî serdanên xwe, tekoşîna ku Pêşmerge li dij DAIŞ'ê dide destnîşan kirin û peyamên weke; "Tekane hêza ku dikare bi DAIŞ'ê re şer bike kurd in" dan, ev peyam wek rîwangeya siyaseta dinyayê ya Kurdistan kete rojevê. Ji aliyekî ve Hêzên Pêşmerge di heman demê de, di gellek eniyan de derbên mezin li DAIŞ'ê dixe, li aliyê din jî tê ragihandin ku paqijkirina Şengal, Mûsil û Guwêr a ji DAIŞ'ê pir nezîk e.

Her wiha Yekîneya Pêşmerge ya ku bi fermana Serokê Rêveberiya Kurdistanê Mesûd Barzanî, di 29'ê Cotmehê de, ji bo li gel YPG û YPJ'ê li dij DAIŞ'ê şer bikin çû Kobanê jî cara sêyemîn dema xwe tije kir û hate guhertin. Yekîneya Pêşmerge ya 2. ku nêzîkî mehekê ye li Kobanê ye, bi ser Pirsûsê ve vegeriya Hewlêrê û yekîneya nû jî derbasî Kobanê bû.

### Barzanî beşdarî Lûtkeya Ewlehiyê dibe

Serok Barzanî bi mebesta beşdarî Konferansa Ewlehiyê bibe wê biçe Elmanya'yê. Hate ragihandin ku bi ser vexwendina Lijneya Amedekar, li ser navê Herêma Kurdistanê, Barzanî beşdarî 51. Konferansa Ewlehiyê ya ku wê li Munih'a Paytexta Almanyayê pêk bê bibe. Di ve konferansa ku wê Serokwezîra Elmanya Angela Merkel serokatiya wê bike de, wê serokwezir û wezîrên 30 dewletan beşdarî lê bikin. Hate ragihandin ku wê Konferans di 6 û 8'ê Sebatê de pêk bê. Ev konferansa ku ji 1963'yan şûn ve li Munihê pêk tê, di salên 90'an de ji ber têkçûna Bloga Rojhilat, girîngiya xwe wunda kiribû. Di vê konferansa ku sala çûyî cara 50. pêk hate de ji ber ku gefa terorîzmê berz bû bi beşdariyeke mezin pêk hatibû.

### Barzanî beşdarî Davosê dibe

Li gel Lûtkeya Ewlehiyê ya li Almanya, Barzanî, di forûmeke navneteweyî ya din de jî wê nûneriya welatê xwe bike. Wê nêzîkî 500 karmendên payebilin û nûnerên dezgehên sivîl ên dinyayê û ji 40'î zêdetir serokên hikûmet û dewletan beşdarî Lûtkeya Davos-Klosters a ku cara 45. e tê lidarxistin bibin. Lûtkeya Foruma Aborî ya Dinyayê Davos wê di 21-24'ê Sebatê de pêk bê. Di civînê ku wê bi têmaya "Pêwenda Kureyî ya Nû" pêk bên de li ser mijarên wek; "Hawir û Qutbûna Çavkaniyan, Şiyaniyên Pîşedarkirinê û Sermayeya Mirovî, û hwd" bê rawestandin.

Di nav beşdarvanên vê nîqaşê de Serokkomarê Misirê Ebdulfettah El Sîsî, Mîrê Ordunê Ebdûlah El Huseyn, Serokwezîrê Iraqê Haydar El Abadî, Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, Serokdewletê Ûkrayna Pero Poroşenko hene. Beşdariya Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ya ev herdu Lûtkeyan wek nîşaneya hevkariya Başûrê Kurdistanê ya ku roj bi roj bek bi serxwebûnê ve diçe tê ditin.

### Tekane hêza ku bikare DAIŞ'ê têk bibe kurd in

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li Hewlêrê bi Nûnerê Taybet ê Tekoşîna Kureyî ya li dij DAIŞ'ê yê Serokê DYA'yê Obama, Generalê Teqawidbûyî John Allen û le pey wî jî Seroka Parastinê ya Almanyayê Ursula von der Leyen hate cem hev. Piştî serdanên xwe yên Başûrê Kurdistanê ku têkiliyên dîplomatîk bi lez dimeşin, Allen û Leyen di daxuyaniyên xwe yên çapemeniyê de destnîşan kirin ku tekane hêza ku dikare bi îstiqrar li dij DAIŞ'ê şer bike kurd in. Wezîra Parastinê ya Almanya Ursula von der Leyen di serdana xwe ya Hewlêrê ya hefteya çûyî de li gel Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî, her wiha hin serdanên din jî kir. Leyen li gel kampa Pêşmergeyên ku li Mûsil, Şengal, Guwer û li hin xalên stratejîk li dij DAIŞ'ê şer dikin, her wiha bi Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyîd Qadir re serdana kampên Pêşmergeyên ku ji alî şêwirmendên leşkerî yên Alman têne perwerdekirin jî kirin. Seyîd Qadir bibîr xist ku Almanya berê jî Pêşmerge re çek şandibû û got: "Di demeke nêzîk de wê hêzên Pêşmerge hemû axa ku ji alî DAIŞ'ê ve hatiye dagirtin rizgar bikin" Leyen jî vê mijarê şîrove kir û got: "Pêşmerge îsphat kir ku DAIŞ dikare bê têkşikandin"

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li Hewlêrê pêşwaziya lijneya DYA ya ku ji Nûnerê Taybet ê Tekoşîna Kureyî ya li dij DAIŞ'ê yê Serokê DYA'yê Obam, Generalê Teqawidbûyî John Allen, Cîgirê Rawêjkarê Wezareta Derve ya DYA Brett McGurk, Balyozê DYA yê li Bexdayê Stuart Jones û Balyozê DYA yê li Hewlêrê Joseph Pennington û hin berpirsên leşkerî pêk tê kir. Di civînê de Allen ji ber serkeftinên hêzên Pêşmerge yên li Zûmar, Rabîa û Şengalê Barzanî pîroz kir. Alen destnîşan kir ku DAIŞ bi destê Pêşmerge hatiye têkşikandin û anî ziman ku Barzanî jî di şerê li dij terorê de roleke girîng pêk aniye. Allen, da zanîn ku wê piştgiriya DYA ya li Herêma Kurdistanê dom bike û destnîşan kir ku hêza herî girîng a ku dikare li dij DAIŞ'ê şer bike kurd in û got: "Pêşmerge Efsaneya DAIŞ'ê qedandiye" John Allen, her wiha anî ziman ku ji ber alîkarbûyîna koçberên ku ji ber şer ji warên xwe bûne Herêma Kurdistanê şayanî pesindayînê ye û got: "Ev xebatên Herêma Kurdistanê wê di dinyayê de hildaye asteke bala" Barzanî jî di hevdîtinê de ji ber piştgirîdayîna wan spasiyên xwe ragihand Serokê DYA Obama û gelê Amerîkayê. Wezîra Parastinê ya Almanya Ursula von der Leyen piştî serdana xwe ya Herêma Kurdistanê, di axaftina xwe ya Meclîsa Federal a Alman de qala serdana xwe kir û got: "Divê civaka navneteweyî bêtir bawerî bi kurdan bîne û piştgirî bide wan. Li gor min divê civaka navneteweyî di mijara tekoşîna li dij DAIŞ'ê de bibêje 'Em hemû kurd in' û 'Em hemû ezdî ne'" Leyen wiha dom kir: "Di serdana min a Herêma Kurdistanê de xuya bû ku li dinyayê tekane hêza ku dikare li dij DAIŞ'ê têbikoşe û hêza ku dikare DAIŞ'ê têk bibe kurd in. Bi rastî jî kurd di tekoşîna li dij DAIŞ'ê de pir serkeftî ne" Wezîra Parastinê ya Almanya Leyen her wiha destnîşan kir ku divê Almanya, Ewropa û civaka navneteweyî bêtir piştgirî bide kurdan û bang li hikûmeta Almanyayê kir da ku ji bo tekoşîna li dij DAIŞ'ê bêtir piştgirî bide Herêma Kurdistanê.



### 500 jinên ezdî hatin rizgarkirin

Li gel geşedanên dîplomatîk ên Başûrê Kurdistanê geşedaneke din ya pir girîng jî pêk hat. 500 jinên ezdî yên ku di Tebaxa sala çûyî de piştî êrîşa Şengalê ji alî DAIŞ'ê ve hatibûn revandin, hatin rizgarkirin. Di berdewamiya xebatên rizgarkirina jinên ezdî yên ku revandina xwe ketibûn rojeva dinyayê 500 jin hatin rizgarkirin. Endamê Parlamana Herêma Kurdistanê û Seroka Meclîsa Mafê Jinan Êvar Îbrahîm da zanîn ku ji 4 hezar jinên ku ji alî DAIŞ'ê ve hatibûn revandin 500 jin bi hin rêbazan hatine rizgarkirin. Êvar Îbrahîm diyar kir ku ji bo jinên hatine revandin di bin banê Parlamena Kurdistan de komîsyoneke şopandinê hatiye damezirandin û got: "Ev komîsyon li Duhok û derdora wê hin xebatên cihê dimeşîne"

### Barzanî li eniyên Mexmûr û Guwêrê ye

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî serdana eniyên şer ên Mexmûr, Guwêr û Şengalê kir. Barzanî li eniya Mexmûrê li gel Pêşmergeyan eniyan kontrol kir û bi Fermandarên Hêzên Pêşmerge yên vê eniyê re civînekê pêk anî. Barzanî di civînê de Pêşmergeyan pîroz kir û got: "Ez baş pê bawer in ku Pêşmergeyên qehreman ên ku ji bo rûmeta gelê Kurdistan têdikoşin û canên xwe gorî dikin, xwedî şiyaniyeke berz e ku dikare derbên kujerî yên ku terosîst heq dikin li wan bide. Ji ber vê helwesta wan a canfîdayî ya ku efsaneya DAIŞ'ê perçe wesle kirine ez spasdarê Pêşmerge me. Ji ber tekoşîna wan a bêhempa hemû dinya Pêşmerge û Kurdistanê bi hurmet bibîr tîne"

### Barzanî pêşwaziya Serokê Xaçasor kir

Li Başûrê Kurdistanê çûnûhatên dîplomatîk bê navber dom dikin. Serokê RHK Barzanî hefteya çûyî her wiha bi Serokê Xaçasor Peter Maurer hevdîtinekê pêk anî. Di daxuyaniya di derbarê vê hevdîtinê de Barzanî peyama qedandina terorê da. Barzanî got: "Terorîstan xwestin ku mezinbûn û pêşveçûna Kurdistan rawestînin. Bi hêza ku bi dest xistin, xwestin ku Herêma Kurdistanê dagir bikin û bi vê mebestê êrîşî axa me kirin. Lê belê guman nekirin ku wê hêzên Pêşmerge û gelê kurd parastineke wiha bala bikin û dostên Kurdan ev çend alîkariya kurdan bikin" Serokê Xaçasor Peter Maurer jî bal kişand ser tekoşîna û got: "Ji ber ku we deriyên xwe li sedhezaran koçber û penaberan re vekir em spasiya Hikûmeta Kurdistanê dikin. Bo ku wan mirovên ji ol û neteweyên cihê hewandin û wan li hember xeteriya terorê parastin."

### Ezdî, ne xweseriyê serxwebûnê dixwazin

Li gel geşedanên dîplomatîk, di berdewamiya operasyonên rizgarkirina Şengalê de niqaşên pergala birêvebirina siberoja Şengalê jî destpê kirin. Qeymeqamê Şengalê Meyser Hecî bersiv da aliyên ku xweseriya Şengalê diparêzin û got: "Ji % 2'yê ezdiyan piştgirî didine kantonbûyîna Şengalê. Em ji bilî Rêveberiya Herêma Kurdistanê tu rêveberî nas nakin" Meyser da zanîn ku ewê destûr nedin bazarkirina li ser rêvebirina Şengalê û wiha dom kir: "Emê giliyê vê mijarê bi awayekî fermî li Hewlêr û Bexdayê bikin. Di demeke wiha aloz de divê ev nîqaş nehatina destpêkirin. Herkes û hemû dinya dizane ku Şengal girêdayî Herêma Kurdistan û Iraqê ye" Fermandarê Pêşmerge yê Ezdî Kasim Derbo jî di vê derbarê de ragihand ku pêkanîna kantonê rêbazeke şaş e û nayê qebûlkirin û got: "Tê xwestin ku sûd ji vê rewşa aloz ya Şengalê bê wergirtin. Deynê me ji Serok Barzanî re heye. Di kêliya ku bi sedan Pêşmerge ji bo Şengalê canên xwe didin de, hin kesên din di derbarê Şengalê de diaxivin"

### Mensûr Barzanî: DAIŞ'ê derbên mezin xwar

Ji alî din ve, di berdewamiya operasyonên ku çend roj berê li Mûsil û Guwêrê li dij DAIŞ'ê hatin destpêkirin de hate daxuyandin ku DAIŞ'ê şikestên mezin xwariye. Fermandarê Pêşmerge Mensûr Barzanî di derbarê operasyona ku li Guwêrê pêk hat de ragihand ku li Guwêrê derbên mezin li DAIŞ'ê hatine xistin û DAIŞ'ê şikestên mezin xwariye. Fermandarê Hêzên Taybet Mensûr Barzanî diyar kir ku eniya Guwêrê bi tevahî ji DAIŞ'ê hatiye paqijkirin û got: "Niha em li vê herêmê ne û ev herên bi aram û parastî ye" Barzanî di berdewamiya axaftina xwe de destnîşan kir ku Pêşmerge û hêzên Asayîşê li dij DAIŞ'ê bi qehremanî şer dikin û axa Kurdistanê û bi taybetî jî paytext Hewlêrê diparêzin û ji sersaxiya malbatên Pêşmergeyên ku di şer de jiyana xwe ji dest dane xwest. Fermandarê Pêşmerge yê Eniya Mexmûr û Guwêrê Sîrwan Barzanî jî di daxuyaniyekê de ragihand ku DAIŞ'ê bi çekên giran êrîşekê haniye ser hêzên Pêşmerge yên ku herêma Siltan Ebdula diparêzin, hêzên Pêşmerge bi helwesteke tûnd bersiv daye vê êrîşê û di van pevçûnan de gellek DAIŞ'î hatine kuştin.

### Di hemû eniyên Mûsilê de DAIŞ'ê derbên mezin xwar

Serfermandarê Giştî yê Pêşmerge General Cemal Mihemmed jî da diyar kir ku Mûsil ji bo DAIŞ'ê pir girîng e lê di hemû eniyan de gellek endamên wê hatine kuştin û ji bo telafîkirina van kuştiyan êrîşan pêk anî ye. General Mihemmed diyar kir ku hêzên Pêşmerge li derdora Mûsilê, li Şengal, herêma Bendava Mûsil, Hazir, Guwêr û Mexmûrê operasyonên pir serketî pêk anî ye, DAIŞ'ê paş ve revandiye û hemû hewldanên wê yên êrîşê pûç kirî ye. Mihemmed got: "DAIŞ, di hemû eniyên Mûsilê de têk çû. Hêzên alîkariyê yên ku ji Sûriye û Ramadiyê hatin hawarê jî derbên mezin xwarin" Mihemmed da destnîşan kir ku DAIŞ, Mûsilê weke paytexta xwe dibîne û diyar kir ku ji ber di eniyên li derdora Mûsilê de derbên mezin xwar DAIŞ ketiye nav tirs xofan. Mihemmed anî ziman ku ji ber van têkşikestinan DAIŞ, bêtir hewl dide êrîşên xwekujî pêwîstiya pêşîlêgirtina xeteriya êrîşên xwekujî destnîşan kir. Di derbarê şere li Şengalê de jî tê ragihandin ku ji bo Şengal bi tevahî bê rizgarkirin amadekariyên planeke nû têne kirin û tê gotin ku wê navçeya Şengalê di demeke nêzîk de bi tevahî bê rizgarkirin. Berpirsê Eniya Şengalê yê Hêzên Pêşmerge Emîd Baram destnîşan kir ku bi êrîşên bersivdayînê wan DAIŞ'ê tengav kirine û got ku wan emîrê DAIŞ'ê yê bi navê Mihemmed Mûsa Elîbî û 16 endamên wê kuştine.



### Kerkûk di bin kontrola Pêşmerge de ye

Fermandarê Hêzên Pêşmerge yê Kerkûkê Kemal Kerkûkî jî di derbarê eniyên Kerkûkê de ragihand ku Pêşmerge hêdî lê bi hendazeyî tevdigere û hewl dide ku bi kêmtirîn zayîatê di şer de bi ser bikebe. Kerkûkî ragihand ku şiyaniya DAIŞ'ê ya ku êrîşan pêk bîne nemaye û ji ber vê yekê di warê moral de jî şikestiye lê berovajiyê wê Pêşmerge ji bo êrîşan pêk bîne bê sebir e. Fermandar Kemal Kerkûkî da zanîn ku DAIŞ'ê hemû enerjiya xwe arasteyî Şengalê kirî ye lê belê li Şengalê jî ber bi têkçûnê ve diçe û êdî DAIŞ ketiye pêvajoya hilweşînê.

# Li Cizîrê kî zarokan dikuje?

Ji çalakiyên ku bi mebesta protestokirina êrîşên li ser Kobanê yên di 6 û 7'ê cotmehê destpêkiribûn vir de li Cizîra nevçeya Şernexê bûyerên ku bi şaîbe didomin gihîştin asteke tirsnak. Di bûyerên ku li navçeyê heta niha qewimîn de 5 jê zarok, 6 kes hatin kuştin û rûdanên bi şik şêniyê navçeyê bêzar dikin. Li aliyê din daxuyaniyên ku ji aliyê tevgera kurd, AKP û derdorên oldar ve têne ragihandin li ser heman peyamê disekinin û herkes di wê fikrê de ye ku kuştin û rûdan ji aliyê kes an jî deverên ne zelal ve têne kirin.

Piştî buyerên Kobanê endamên YDG-H'ê li Cizirê dest bi kolana xendeqan kiribû û pevçûna di navbera wan û polîsan berdewam kiribû. Di dawiya sala 2014'an de jî li Cizîrê buyerên heman rûda. Her çiqas şerê ku di 26'ê kanûnê de derket weke şerê HÜDA-PAR û YDGH'ê hate eşkerekirin jî bi dawîbûn û vekişîna HADA-PAR'ê ya ji qada şer, di nava 15 rojan de 6 zarokên temenê wan ji 19 salan biçûktirin hatin kuştin. Kuştina zarokan gelek pirsên têkildarî mijarêjê bê bersiv dihêle. Digel ku ji bo proseya aştiyê pêngav têne avêtin jî li Cizirê mirina zarokan berdewam dike. Rayedarên HADA-Par û HDP'ê kuştina zarokên Cizîrê weke "Buyerên provakatîf" ragihandin" li hêla din jî rayedarên Hikûmetê jî anîn ziman ku "Polîsan jî ew kar nekiriye." Piştî ragihandin û daxuyaniyên rayedaran, pirsa "Zarokên Cizîrê bi destê kê tênê kuştin?" li holê dimîne. Her wiha buyerên salên 1990'î yên ku kurd dihatin windakirin û kuştin jî bi bîra mirov dikevin.

Êrîş û fîşar û kuştin û wendakirinên di salên 1990'î yên li hember tevgera kurd ku ji hêla Hizbullahê ve dihat kirin, niha li Cizîra Şirnexê careke din vedijîn. Ji çalakiyên 6 û 7'ê cotmehê heta niha li bajêr şer û pevçûn berdewam dikin. Bi berdawamiya şer re jî kuştinên ku failên wan nediyar in û şerên kolanan jî berdewam dike. Piştî buyerên Kobanê YDGH'ê li Cizîrê dest bi kolandina xendeqan kir û xweseriya xwe ragihand. Di destpêka kolandina xendeqan û ragihandina xweseriyê de hêzên ewlehiyê bê deng man. Di meha kanûnê de hêzên ewlehiyê dest bi bersivdayîn û êrîşan kir û li Cizîrê dîsa buyer derketin hol ê. Merasimên şehîdên cenazeyên YPG'ê li Cizîrê bû sedema destpêkirina şer di navbera HÜDA-PAR û YDGH'ê de. Pevçûnên di 26'ê kannûnê de rûdan di 27'ê mehê de derbasî nav taxên Nur, Sur û Cudiyê jî bûn û şerên giran li wir qewimîn. Di encama şerê herdu terefan de 8 kesan jiyana xwe ji dest dan. Di destpêka meha 2015'an di meha çileyê de dengên çekan û mirina zarokan dîsa li Cizirê pêk hatin. Tohmetbarê kuştina Hrant Dink, Ecran Demir weke Midûrê Ewlehiyê yê Cizirê hat tayînkirin. Ercan Demir weke Amirê Şaxa Îstîxbaratê ya Trabzaonê kar dikir. Di pey tayînkirina Demir, Hevserokên Şaredariya Cizirê dest bi girtina xendeqan kirin. Di roja girtina xendeqan de zaarokê 14 sal î yê bi navê Ümit Kurt jiyana xwe ji dest da. Biryara nepeniyê li ser kuştina Kurt hat derxistin û dengên çek û teqînan li bajêr berdewam kir. Gera wesayîtên polîsan yên bê plaka jî şik û guman zêde kirin. Piştî mirina Kurt û birîndariya gellek kesan ve vê carê jî zarokekî 12 salî hat kuştin. Piştî van buyeran terefan dîsa hevdû tometbaran kirin.

## HDP, DBP û Hikûmet, HÜDA-PAR: Ev provakasyon e

KCK'ê piştî mirina zarokan li Cizirê bangawazî li YDG-H'ê kir û wiha got: "Eger di buyeran de ew kesê rûyê xwe bigre û molotofan biavêje ew ne endamê me ye, ew kes sîxur e." KCK'ê bi vê bangwaziyê ji ciwanan xwest ku maskeyan bikarneynin û molotofan jî navêjin. Piştî daxuyaniya KCK'ê jî buyerên Cizirê bi heman awayî berdewam kirin. Vê carê partiyên siyasî û rayedarên Hikûmetê ketin dewrê. Partiyan anî ziman ku ev buyer "prvakasyon in." Rayedarên Hikûmetê jî bi hinceta van buyeranb yasaya bi navê 'Pakêta Ewlehiya Navxweyî û Pergala Raya Giştî' anî rojevê. Bi zêbûna buyeran û bi mudaxaleya tund a polîsan roj be roj mirina zarokan metirsiyê dixe dilê xelkê. Li Cizirê teref hevdû tometbar dikin û eşkere dikin ku ev li hember proseya aştiyê têne kirin û provakasyon in. Piştî buyerên 27'ê kanunê Serokê HÜDA-PAR'ê bal kişand ser bûyeran û eşkere kir ku ev bûyer weke provokasyon li hember proseya aştiyê têne kirin. Her wiha Hevserokê DBP'ê Kamuran Yüksek jî li ser buyeran rawestiya û behsa provakasyonan kir. Yüksek di daxwiyaniya xwe de li ser van babetan rawestiya: "Em tu carî şer û pevçûnê di navbera kurdan de naxwazin. Em pevçûn û lêkdanên tundrew durist nabînin. L êbelê ev buyer çawa rû didin mebest çi nin divê ji hêla raya giştî ve bê zanîn." Hevseroka HDP'ê Figen Yüksekdağ jî daxuyaniyek belav kir. Yüksekdağ lî ser proseya aştiyê rawestiya û wisa berdewam kir: "Di rojên ku proseya aştiyê têne nîqaşkirin de derketina buyeran a îro li Cizirê provakasyoneke tarî ye." Rayedarên Hikûmetê jî bal kişandin ser provakasyon an. Piştî buyerên 6 û 7'ê cotmehê pêşnûmeya yasaya bi navê Pakêta Ewlehiya Navxeyî û Pergala Raya Giştî anî rojevê. Li gor xalên di 'paket'ê de cezayên kesên beşdariyê li çalakiyên kuçeyan dikin dê bêne zêdekirin û ji bo binçavkirinan jî gumana polîsan jî bi serê xwe bes be. Her wiha Serokwezîrê Tirkiyê Ahmet Davutoğlu diyarkiribû ku buyerên Cizirê destnîşan pewîstiya derçûna 'pakêtê' nîşan daye



### Peyama Öcalan û kuştina zarokê 12 salî

Piştî mirina Ûmît Kurt faîl nehatin dîtîn û li ser dosyayê biryara nepeniyê hat derxistin. Piştî mirina Kurt vê carê jî Serokê PKK'ê Abdulla Öcalan ji xelkê Cizirê re peyam şand. Şandeya KCD'ê û HDP'ê beriya bi çend rojan çûn Cizîrê û peyama Öcalan ji xelkê Cizîrê re xwendin. Peyama Öcalan ji aliyê Hevseokê KCD'ê Hatip Dicle ve hat xwendin. Öcalan di peyamê de buyerên di meha cotmehê de bibîrxistibû û wisa berdewam kiribû: "Me bi çavên xwe buyeren 6 û 7'ê cotmehê dîtîn. Tank êdî derketibûn cadde û kolanan. Eger me mudaxele nekira heta hefteyekê dê darbeya leşkerî pêk bihata.Bi wê darebyê dê komkujîî pêk bihatana. Ji ber vê yekê em kurd qiymetê vê proseyê baş dizanin. Lê belê tenê zanîna me ne bes e. Binêrin xelkê Cizîrê ji van buyeran nerihet e.Me li wan guhdar kir. Em naxwazin weke operasyonên KCK'ê bi hezaran ciwanên me têkevin zindanan. Ji ber vê yekê xema me heye. Eger rayedarên dewlet û Hikûmetê dixwazin ev prose berdewam bike divê bar bigrin ser milê xwe. Me weke ciwanên welatparêz biryar stendiye ku em ê rûyên xwe negirin û derabeyên dikanan jî danexin. Niha divê qiymetê vê yekê bê zanîn." Lê belê di heman rojê de zarokê 12 salî yê bi navê Nihat Kazanhan hat kuştin.

## Deriyên malan hatin xêzkirin

Xendeqên ji hêla Şaredariya Cizirê ve hatibûn girtin dîsa hatin vekirin. Her wiha weke di buyerên Meraşên de li hember Ellewiyan hatibûn kirin li Cizîrê jî pêk hatin. Li Meraşê malên Ellewiyan hatibûn destnîşankirin. Ev kiryar niha li Cizîrê jî hat kirin. Li Taxa Nur a Cizîrê dîwar û deriyên hin malan bi boyaxa reş hatibûn reşkirin. Tê payîn ku ev yek ji hêla HÜDA-PAR'ê ve lê wan ragihand ku tu eleqeya wan bi boyaxkirina mal û deriyan ve tuneye û ew kiryar jî provakasyon in. Şêniyên Cizirê radigihînin ku ew ditirsin zarokên xwe bişînin dibistanan jî û ew demildest dixwazin ev buyer bi dawî bibin. Ji aliyê din YDG-H'ê jî daxuyaniya KCK'ê bi cih nake û çalakiyên xwe didomîne û "xweparastinê" jî weke hincet nîşan dide. Ewlehiya Cizîrê jî plakayên wesayîtên bizirh rakir. Şaxa IHD'ê ya Şirnexê û Baroya Şirnexê li hemberî vê yekê nerazîbûn nîşandan. Her wiha tê ragihandin ku êvaran polîs bi wesayîtên bê plaka li nava taxan digerin û sirûdan bi tirkî vedikin.

## Vê carê jî Ümit Kurt hat kuştîn

Ji roja ku buyeran li Cizîrê destpêkirine heta niha her êvar li Cizîrê ceyran diçe. Her wiha di şeva girtina hendekan jî de Ümit Kurtö 14 sali hat kuştın. Tê payîn ku Ümit Kurt li Taxa Cûdiyê li malêke karê badanayê dikir û polîsan tax gulebaran kirine û di encama guleberanan de Kurt hatîiye kuştin. Hevalên Ümit Kurt ragihandin ku Ümit Kurt ne endamê YDG-H'ê ye û ew ji bo kar çûbû Taxa Cûdî û ew li ser kar hatiye kuştin. Di roja Ünit Kurt hat kuştin de hat zanîn ku tohmetbarê doza Hrant Dink Ercan Demirê Amirê Şaxa Îstîxbaratê ya Trabzaonê weke Mudîrê Emniyetê yê Cizirê hatiye tayîn kirin.

## Rêxistin: Polîsan ew kuşt - Dewlet: Polîsan çek bikarneanîne

Piştî mirina zarokê 12 salî yê binavê Nihat Kazanhan DBP'ê, HDP'ê û Hevseokön Şaredariya Cizîrê polîs tewanbarkirin û anîn ziman ku Kazanhan bi destên polîsan hatiye kuştin û piştî mirina wî fişekên vala jî hatine berhevkirin. Her wiha hevalên Kazanhan jî anîn ziman ku polîsan bi libasên sivîl û bi wesayîtên zirhî hatine taxê û tax gulebaran kirine û Kazanhan ji di dı encama gulebaradinê de miriye. Piştî gotinên hevalên Kazanhan Wezîrê Hundir ê Tirkiyê Efkan Ala jî anî ziman ku polîsan çek bikarneanîne. Di rapora otopsiya Kazanhan de derket holê ku Kazanhan bi çeka neçîrê hatiyê kuştin. Encama raporê wiha ye: "Perçeyekî plastîk ê 5 santîm ji serê wî hatiye derxistin." Di encama rapora Krîmînal a Polîsan jî de ev encam derketin holê: " Tiştê ji serê wî hatiye derxistin dişibe topa roketê ya 12 nimara. Ew di gulleyên neçîrê de tê bikaranîn û hat tespîtkirin ku ew jî bi çeka neçîrê hatiyê avêtin."



### İmret: Berpirsê mirinan "Paralel e"

İmret anî ziman ku buyer weke şerê di nabera Hüda Par û HDP'ê de tên vegotin lê di navbera Hüda Par û DBP'ê HDP'ê de tu mesele tuneye. Hevseroka Şaredara Cizîrê İmret bal kişand ser rêxistina Paralêlê û anî ziman ku berpirsê mirinên Cizîrê rêxisina Paralel e. İmret her wiha eşkere kir ku her çend buyer gur in û xelk nerihete jî ew dîsa terefgirê aştiyê ne. İmret wiha berdewam kir: " Hemû kes bi berpirsiyarî tevdigeriya. Buyer kêmbûn û rewş ber bi normalbûnê ve diçû lê dîsa mirin pêk hat. Lê belê xelk jî dizane ku destên hêzên tarî di vî karî de heye. Xwestin xelkê bi HÜDA-PAR'ê biaxapînîn lê bi serneketin. Gellê me terefgîrê aştiyê yê lê kesên aştiyê naxwazin Paralel niha li Cizîrê ye. Ji bo ku ev pêvajo bê fêmkirin divê bê eşkerekirin ku ev mirin bi destên kê têne kirin."



## Ji Baroya Şirnexê doza lêpirsînê

Piştî mirina zarokan Baroya Şirnexê ji bo fail bêne dîtin û buyerên li Cizîrê rûdidin bêne ronîkirîn ji aliyê Baroya Şirnexê ve doz hate vekirin. Serokê Baroyê Noşirevan Elçi, doz li Midûriyeta Emniyetê ya Cizirê vekir. Noşirevan bi hinceta mafê mirovan tê binpêkirn serî li dozgeriyê da û xwest lêpirsîn bên vekirin. Serokê Baroya Şernexê, Noşirevan Elçi, Serokê Şaxa IHD'ê ya Şernexê Emirhan Uysal, Hevseroka Şaredariya Cizirê Leyla İmret û rojnameger İdris Emen û xelkê Cizîrê di derbarê buyerên li Cizirê de ji rojnameya Basnûçeyê re axivîn.

## Elçi: Dê buyerên mezintir li Cizirê pêk werin.

Serokê Baroya Şernexê, Noşirevan Elçi anî ziman ku buyerên nihaê yê li Cizîrê heyî, ji buyerên mezitrir re dibin zemîn. Elçi her wiha eşkere dike ku li Cizîrê cihê peyvê nemaye û dê buyerên mezinrtir li Cizîrê pêk werin. Elçi wiha berdewam kir:" Cihê peyvê nemaye. Heman buyeran dîsa destpêkiriye û vegotina van buyeran bi yasa û qanûnan jî ne mûmkûn e. Ev buyer li hember aştiyê komplo ne. Peyama Ocalan hêvî bi xelkê re çêkirin. Lê belê di pey peyamê re zarokekî din hat kuştin. Ev rewş nayê qebûlkirin. Ji bo ku di nava civakê de pevçûn û alozî rû bidin zarokan dikin qurbanî. Rakirina plakayan ji ser erebên zirhî ne hiqûqî ye. Dê buyerên mezin li Cizîrê rû bidin, lê belê ji bo ku prose têk neçe dive herdû bere jî, li terefgîrên xwe xwedî derkevin û wan ji qadê vekşînin." Elçi li ser tayînkirina Ercam Demir jî, rawestiya û anî ziman ku divê êdi herêm weke cihê zirguîn neyê tayahûl kirin.

## Uysal: Ev teror e!

Serokê Şaxa IHD'ê ya Şernexê Emirhan Uysal jî anî ziman ku buyer weke şerên kurdan tên vegotin û eşkerekirin. Uysal ragihand ku bi van mebestan dixwazin proseya aştiyê têk bibin û dixwazin "kurda bi destê kurda bidin kuştin." Uysal li bal kişan ser bêhiqûqî û binpêkirina mafê mirovan jî û wisa berdewam kir: " Tiştên heyî û tiştên têne kirin karê terorê ye. Dayikên Şernexê ne li ser bala tu kesî ne. Di dema pêkhatina gavên proseya çareseriyê de rûdanên wisa dê proseyê ji holê rake, ev buyer ji bo meşrûkirina pakêta ewlehiyê têne derxistin. Ev karesetek e û gefxwarin e. Divê em rê li ber mirinên fail nediyar bigrin"

## Xelkê Cizîrê: Cizîr kirin qurban

Xelkê Cizîrê yê ji ber pekhatina mirinên zarokan nerihet in û aciz izn tînîn ziman ku ew kesên li hember aştiyê ne Cizîr kirine qurban û ew kes naxwazin aştî pêk were. Her wiha xelkê Cizîrê tîne ziman ku buyerên li Cizîrê pêk tên ne xema herdû terefa ye û ew xema xelkê Cizîrê naxwin. Şêniyên Cizîrê wiha dibêjin: "Öcalan behsa aramiyê dike lê belê KCK serhildanê dixwaze. Hema bêje her zarokê derdikeve li kuçeyan tê kuştin. Ev provakasyon in. Rûgirtin û avêtina molotofan û rakirina plakayan ji ser erebeyên zirhî heman ferasetê nîşan didin. Cizîr weke qurban hatiye hilbijartin lê em êdî naxwazin mirin pêk werin û li ser bajêr plan bêne çêkirin. Divê demlidest fail bêne dîtîn.





# DAIŞ li Kobanê xwe dikuje!

Di şerê Kobanê yê ku ev çar meh in dom dike de pevçûn dîsa gur bûn. DAIŞ'a ku li hember hêzên kurd lawaz ket bi êrîşên xwekujî hewl dide ku li ser piyan bimîne. Tê ragihandin ku di vê hefteya dawî de 400 endamên xwe li gel çekên giran şandiye Kobanê. Ji aliyekî ve bi sotandina malan hewl dide ku metirsiyê peyda bike ji aliyê din ve jî hewl dide ku pêşî li êrîşên hewayî yên hêzên hevpeyman bigire.

Di şerê Kobanê ye ku kete meha xwe ya pêncemîn de, di van rojên dawî de pêvçûnên dijwar rû didin. DAIŞ'a ku piştî hêzên kurd ji % 80'yê bajêr kirin bin kontrola xwe hewl dide ku bi êrîşên xwekujî li ser piyan bimîne. DAIŞ'a ku di van rojên dawî de 400 endamên xwe yên ku baş hatine perwerdekirin û di nav wan de kesên biyanî jî hene şandiye Kobanê û ji bo bi ser bikebe her rêbazê diceribîne. Tê angaştin hejmara kuştiyên endamên DAIŞ'a ku çend roj berê bi maşîneke ku 4 ton teqemenî lê barkirî êrîşeke xwekujî pêk anî gihîştiye hezaran.

### '3. Yekîneya Pêşmerge kelecana Kobanê dijî'

Fermandarê Yekîneya Pêşmerge ya 2. a ku vedigere başûr Emîd Şewket Mûzûrî da zanîn ku DAIŞ'ê bi arastekirina şervanên xwe yên nû, di van rojên dawî de li Kobanê êrîşên xwe pir zêde kirî ye. Mûnzûrî ragihand ku êrîşên wê hatine şikestin, hêzên kurd rê nadin ku DAIŞ bi pêş bikebe û ji % 80'yê Kobanê di destê hêzên kurd de ye. Mûnzûrî diyar kir ku du tax di dest DAIŞ'ê de mane û got: "Ji van her dû taxan jî hin cih hatine rizgarkirin. Li van deveran hin cih mane. Beşek ji kaniya ereb û hin deverên rojhilat û bakûrê vê taxê di destê DAIŞ'ê de mane. Lê di demeke nêz de wê ev dever jî ji dest we bêne derxistin. Fermandar Şewket Mûnzûrî ragihand ku rewşa Yekîneya Pêşmerge ya Sêyemîn pir baş e, di warê manewiyatê de pir xurt in û got: "Hê nû hatin û ji ber ku hatine axa xwe ya aliyê Rojava niha pir bi kelecan in"

### 'Li Başûr emê hewl bidin ku alîkarî bikin'

Mûnzûrî diyar kir ku ji ber hatina zivistanê kesên sivîl ên Kobanê di mercên zor de dijîn û banga alîkariyê kir. Mûnzûrî got: "Rewşa sivîlan pir xerab e, lewre ne mazot, ne av, ne xwarin, ne cil û berg û ne jî xaniyên ku xwe pê stare bikin heye" û bang li kurdên çar perçeyan û hêzên navneteweyî kir da ku alîkariyê bikin. Şewket Mûnzûrî diyar kir ku di vê dema ku li Kobanê mane ji Hewlêrê ji bo wan alîkarî hatiye û wiha dom kir: "Ji bo sivîlan divê tafilê alîkarî bê kirin. Piştî ku em bigihîjin Başûrê Kurdistanê emê bi berpirsên xwe re hevdîtinan pêk bînin û ji bo alîkariya Kobanê çi ji destê me bê emê bikin"

### 'Êrîşên ji çar alî pêk hatin jî têkşikestin'

Rojnamevan Zekî Çîçek'ê ku li Kobanê rewşa şer dişopîne ragihand ku YPG'ê çend roj berê li Kolana 48. êrîşekê pêk aniye û piştî vê operasyonê 4 kuçe ji dest DAIŞ'ê hatine derxistin û her wiha tangek û maşîneke zirxî hatiye rûxandin. Çîçek, da zanîn ku piştî vê operasyonê DAIŞ'ê bi maşîneke ku 4 ton teqemenî lê barkirî êrîşekê pêk aniye û got: "Ev êrîş hate pûçkirin" Çîçek da zanîn ku piştî vê şikestinê DAIŞ'ê di navbera Rêya Termîk û Miştenûrê de êrîşekê daye destpêkirin û wiha dom kir: "Di heman demê de ji Girê Miştenur, ji Herêma Dibistana Reş, Rêgeha Tekmîkê û ji alî rojhilat ve jî ji derdora avahiya asayîşê ve ji çar aliyan vê êrîşê dane destpêkirin. Piştî vê êrîşê pevçûnên dijwar rû dan û piştî nîvro ev êrîşa çar alî jî hate têkşikandin"

### DAIŞ'ê di rojên dawîn de hêzeke mezin şand

Çîçek ku bilêvkir ku DAIŞ'ê gelek endamên xwe yên li Reqa, Cerablûs û Minbicê ber bi Kobanê şandine wiha got, "Li gor agahiyên ku min bidestxistine û li gor çavdêriyên min ew ne teqwiyekirineke biçûk e. Êrîş di çend rojên dawî de pir zêde bûn. Heta 3 roj berê YPG her pêş de diçû. Lê belê di van rojên dawî de pêşdeçûn rawestiyayê. Ew jî nîşan dide ku DAIŞ'ê hêzeke mezin bi vir de şandiye. Dîsa bi tirimbêlên bombebarkirî êrîşan dikin. Bo vê jî helbet piştgiriya leşkerî û teqemeniyê divê."

### Armanca şewitandina xaniyan astengkirina êrîşên hevpeymaniyê ye

Çîçek da zanîn ku şewitandina xaniyan ne pêkhatineke nû ye û ew rê berê jî dihatiye bikaranîn û mebeste vê wiha rawakir: "DAIŞ dixwaze ku panik di nava şênî de rû bide. Li aliyê din dixwazin ku êrîşên balfirên hevpeymaniya navnetewî bêne astengkirin. Berê jî gelek caran ew rêbaz bikartianîn. Ji roja ku ez hatim vir virde 4-5 caran şewitandina xaniyan pêkanîn. Dema ku mij bilind dibe fir a balefirên hevpeymaniyê asteng dibe û ew nikarin istixbaratê bidestxin."

### 'Divê bil ez piştgiriya sivîlan bê kirin'

Herwekî din çîçek wiha domkir: "Li bajêr hîn jî bi hezaran sivîl hene. Hinek ji van li nêzî sînor in û bêşek jî li cihên bi ewle ne. Çar meh in ew kes bo ku jiyana xwe bidomînin têdikoşin. Rêveberiya kantonê bo ku pêdiviyên wan bi cîh bîne bi hemû hêza xwe dixebite lê hêza wan têrî nake. Stokên li bajêr li ber bidawîbûnê ne. Divê bi lez piştgiriya wan a her alî bê kirin."

### 3. yekîneya Pêşmerge li Kobanê ye

Di vê navberê de yekîneya Pêşmergeyan ya duyem, pêywira xwe ya 45 rojan a li Kobanê bi dawî anî û cîhê xwe dewrî yekîneya 3. kir û bixwe jî vegeriyan Hewlêrê. Yekîneya nû ya ku ji 150 kesî pêk tê gihîşt Kobanê.

### DAIŞ'ê 400 endamên xwe bo Kobanê verîkir

Di vê navberê de hat ragihandin ku DAIŞ'ê di rojên dawî de 400 endamên xwe ji bo Kobanê şondine û ew tevî çekên giran gihîştine nêzî Kobanê. DAIŞ ku li bajêr her paş de diçe, girîngiyê dide bidestxistina Kobanê da ku ew bajêr bo bidestxistina Sûriye'yê weke sembol dibîne.

### Rêveberiya Kantona Kobanê li Pirsûsê ye

Herwiha şandeyeke ku ji Hevserokê Kantona Kobanê Enwer Muslî, Wezîrê Tenduristiyê Dr. Nasûn Ahmedî û hin nûnerên din pêk tê, bo ku di derheqê derbasbûna koçberan a ligel Bakûr de agahiyan bidestxin û bi rayedarên dewletê re hin hevdîtinan bikin derbasî Pirsûsê bûn. Muslîm di derbarê serdanê de da zanîn ku hevdîtinên wan ên li gel nûnerên dewletê di rewşeke baş de pêk hatine û bo çareserkirina pirsgirêkên penaberan daxwaziyên wan bi avayekî erênî hatine guhdarkirin.

### Bîlançoya 4 mehan ya Kobanê

Mala Çavdêriya Mafên Mirovan a Sûriye'yê (SOHR) jî bilançoya êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Kobanê eşkerekir. Li gor rapora saziyê ji deskêka êrîşan vir dehezar û 109 endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û 462 çekdarên YPG/YPJ'ê jî jiyana xwe jidestdane. Di rapora saziyê de wiha hate gotin: "Heta niha 32 sivîlên kurd jî jiyana xwe jidestdane. DAIŞ'ê 17 sivîl înfazkirine. 4 kes hatine serjêkirin 4 kes jî ji bombebarana DAIŞ'ê mirine." Di vê navberê de hat ragihandin ku di encama çalakiyeke xwekuştinî ya DAIŞ'ê de 8 endamên YPG/YPJ'ê jiyana xwe jidestdane.

# Pêşmergeyên Misilman!

Selîm Zencîrî

Pêşmergeyên Misilman li edebiyat û dîskorsa siyasî a rejîma Îranê de ji wan kurdan re tê gotin ku li çepera rejîmê de cih girtine û siyaset û berjewendiyên wê diparêzin. Ew kes li nav kurdan de jî bi caş û cerdevan tên nas kirin, ku li rastî de jî, navekî cîketî û gorî tûz û bejna wan e.

**Felsefeya vî navî**

Piştî wê ku şoreşa gelên Îranê (1979'an) li dijî rejîma paşatiyê biser ket, rejîma Xumênî her zû destkevtên şoreşê talan û desthilat jî qorix kir. Gelê kurd jî ku pêşîne û ceribînek dûr û dirêj a xebata siyasî – leşkirî li dijî nîzama Paşatiyê bona bidestxistina mafên mirovî û netewî ên xwe hebû, reaksiyona xwe li hember wê siyasetê nîşan da û gelek pêkol kir daku rejîma Komara Îslamî ji wê siyasetê paşde vekişe. Lê rejîma îslamî ku sermestê desthilatê bibû, hevdem li gel bihêzkirina pêpikên nîzama dijî gelî a xwe ji riyên serkut, asmîlekirin û fetisandina kurdan û tevgera wê, siyaseta afirandina dubendî, çandina tovê netifaqî û dijberiyê û hwd. jî li nav kurdan de bi teoriya meşhûr a"dubendiyê biafirîne, hikûmetê bike", pêş xist.

Rejîmê bi sû îstifade kirin ji hestên ayînî, mesebî, zimanî, zaraweyî, eşîretî, gundî û bajarî li nav kurdan de, karî hin kurdên neberpirs, oportonîst û berjewendîxwaz bixapîne û dubendiyê bixe navmala kurd. Wate him li dijî çepera mafxwazî û welatparêziya kurdan bikar bîne û him jî bi dakutana daca îxanetê li ser eniya wan, dujminatiyê kşrtir bike!

**Avakar û xîmdanerê wê**

Rejîmê zengila şerê birakujiyê li Rojhilata Kurdistanê de bi Ehmed Muftîzade ve lêxist. Ew kesatiyek oldar ê kurd bû ku serperistiya tevger û organîzasiyonek îslamî a kurd bi navê "Mekteb Quran"ê dikir. Çûnkî rûçikê rastîn ê rejîmê jî carê baş derneketibû, karî bi demamk û rûbenda ayînî, hin oldarên kurd wekî Muftîzade bixapîne û bi şantaj û derewên xwe, wan li dijî partiyên siyasî (KDP- Îran û Komele) bikar bîne. Ji ber ku saziyên siyasî ên kurd bi piranî çepgir û demokrat bûn, bi îdeolojî û siyaseta rejîmê re di netebayî û paradoksê de bûn.

Rejîmê jî nedikarî tehemula wan saziyan û hêza qehremane pêşmerge bike û ji bilî riyên serkutê, saziya “Pêşmergên Misilman” ji caş û kirêgirtiyan re weke alternatîv di payîza sala 1979'an de ava kir ku rasterast li jêr serperistiya Sipaha pastarên Îranê de û berpirsatiya Ehmed Miftîzade de bû. Hêza han bûye kulikek kujek li bedena kurdan de û gelek kurd bûne şewata wî kulika kurdkujiyê. Wekî pêşiyên me gotî, rejîmê "agir berda malê, revî xwe da palê"û bi wê siyasetê bi hezaran kurd dan kuştin, agirê dujminatî û kerb û tolhildanê jî xurt kir.



**Armanc ji danîna wî navî**

Ji ber ku civaka kurdistanê piranî bawerdar û oldarên misilman in, rejîmê bi danîna navê han li ser kirêgirtî û caşên îxanetkar, xwast ku ayînê li dijî pêşmergeyên qehreman han bide. yanî bide eyanê ku pêşmerge û hêzên siyasî ên kurd kafir û dûr in ji îslametiyê! Fermana cîhada Xumênî li dijî kurdan di sala 1980'î de, eyankerê w, siyasetê ye. Herweha dixwast ku tevliheviyekê li nav xebatkar û pêşmergên kurd de biafirîne û kesatî û pêgeha bilinde mirovî a wan bi karên kirêt û nerewa ên caşan eybdar bike. Ji ber ku pêşmerge pîroztirîn û xoşewîsttirîn texa civaka kurd in ku yadgarê Komara Kurdistanê û serkomarê wê nemir Qazî Mihemed in.

**Helandina saziya “Pêşmergên Misilman"**

Pıştî wê ku rejîmê bi agir û asin bersiva daxwaziyên rewa û netewî ên kurdan da, û bi hezaran sivîl û jin û zarok kirine şewata agirê kerb û kîna xwe, hêzên siyasî yên kurd neçar man ku bona pêşgirtin ji qurbaniyên zêdetir, hêzên pêşmerge ji bajaran paşde vekişînin. Hêviyek ku bibû xewnek bo rejîmê, ku mixabin jî rast vegeriya. Lewma rejîmê demildest Kurdistan dagîr û mîlîtarîze kir. Bi paşdekişyana hêzên kurd ji rojhilatê û mîlîtarîzekirina wê ji aliyê rejîmê ve, şer û pevçûn jî kêmtir bûn. Lewma hewcehiya rejîmê jî bi caş û qirêjxorên kurd re kêmtir dibû û ji ber wê ku tu carî baweriya xwe bi wan nekiribû, hêdî hêdî kete teror û tesfiyeya fîzîkî a wan caşan. Yekem car, ji Ehmed Muftîzade û serkirdeyên wê rêxistinê re dest pê kir û hemû îdam kirin. Piştre saziya "Pêşmergên Misilman" jî li nav hêza Besîc de veheland. Ew kirêgirtiyên kurd ku betal in ji rêz, rûmet û pêgeha civakî û hejmara wan ne ewqas zêde ye, ji hingê ve heya niha, berdewam ji aliyê rejîmê ve her car bo meramekê hatine bikar anîn, vêca çi wekî kopal bo çavsoriyê be, çi wekî alav bo sîxoriyê, yan jî wekî kirêgirtî ji bo belawkirina madeyên hişber li nav ciwanan û ...hwd.

**Kongreya “Pêşmergeyên Misilman”**

Piştî derbasbûna 35 salan bi ser avakirina saziya "Pêşmergên Misilman", xêr e ku rejîm taze ketiye hizra pêkanîna kongireyekê bo caşan? Ma li wê midehê de ji bilî şikandina kesatiyê û stûxwarkirina wan çi jêre kiriye? Xêr e niha dixwaze rêzek menewî ji wan bigre? Bêguman pêkolên rizgarbûna ji nîrê zordariyê û dîzayna nû a deverê û pêvajoya bûyeran, xew ji çavê dîktator û dagîrkerê rojhilatê herimandiye û neçar dike tedbîrên hewce bistîne û dîsan dek û dolaban bigerîne!.

Çûnkî faktera kurd li deverê de bihêz e û piştewaniyek bihêz a navneteweyî jî misoger kiriye. Bi taybetî Herêma Federal a Başûrê Kurdistanê bûye bi nawenda tirafîka dîplomasiya cîhanê û di waqi'a siyasî û urfên dîplomatîk de weke dîfakto, rola dewletekê dilîze. Herweha li Rojavayê Kurdistanê de jî serbarê hemû kêmasiyan, statûyek kurdî ava bûye, û xebat û berxwedana şervanên wir û çîrokên qehremantî û destanrêsiyên pêşmerge di hemû dunyayê de deng vedaye û bûye bi mîdalyaya şanaziyê bo hemû kurdan. Li bakûr jî dewlet neçar bûye ku îtirafê bi nasnameya kurdan bike û çiqas ku hêdî jî bimeşe, lê pêvajoya aştiyê hêviyek afirandiye.

Lê ya ku çi guhertin bi ser mentalîte û zehniyeta xwe li dor reformên siyasî de neaniye, rejîma terorîstî a Îranê ye ku bûye kulikek li pêşiya aştî û aramiyê di Îran û deverê de.

**Şûra şer û mertala xweparastinê**

Rejîma Îranê ku çavê dîtina serketinên kurdan û navdengê pêşmergan nine, dixwaze bi hin poanên biçûk û menewî, dîsan bala kirêgirtî û besîciyên emegnase kurd bo aliyê xwe rakişîne û bi lidarxistina kongireyekê û organîzekirina wan caşan di çarçoveya hêzek leşkirî a xwecihî de armancên mirare xwe pêş bixîne. Ew bi piropagandayên xwe li ser vê hêzê, him navdengê pêşmergan xerab dike, him jî peyamekê bo hundur û yekê jî derve re bişîne. Wate, bi zîndîkirina sîstema caşatiyê, dixwaze ji rojava re bêje ku kurd nek dijberê nîzamê ninin, belkî "pêşmergên Misilman" parêzerên rejîmê ne û opozîsyonê bêhitbar. Him jî bêje tevgera rizgarîxwaze kurd ku her gav hewce bike, dikare birayên xwînî weke derbasbûyî li dijî wan weke şûra şer û mertala xweparastinê ji xwe re bikar bîne.

**Encam**

Bi xweşî ve niha kurd ji her demekê pêtir hişyar û yekgirtîtir in û bi başî dikarin dost û dujminan ji hev bikin. Bi taybetî rûçikê rejîma dijîkurde Îranê ji her demê pêtir eşkere bûye û bi dek û dolab û tedbîrên wusa jî, dîsan hejmara xapînok û kirêgirtiyên kurd ewqas nabe ku rejîm bikare hesabê li ser bike û tevna pîlanên xwe pê raçîne. Wê rejîmê gelek qerqeşe anîn serê kurdan, lê pêşhat û pêvajoya bûyeran ku zirava rejîmê qetandiye, ne di berjewendiya sîstemên wusa de ye û dereng yan zû, wê roja wê jî were û hesaba xwe li teraziya wijdan û dadgeha gel de bide. Lewma rûreşî tenê bo wan qirêjxorên îxanetkar dimîne ku bi saza dujmin diketin semayê, lê hêj derfet maye ku bi vegeriyana xwe, pîlana rejîmê pûç bikin.

# Rojhilat: Di rêya yekîtiyê de

**Bektaş Yılmaz**



Hevgirtina hêzen kurd ya ku li Başûr û Rojavayê Kurdistanê li hember DAIŞ'ê didome arîşeyên di navbera partiyên kurdan de ji holê radike û wan nêzîkî hev dike. Partiyên Rojhilatê Kurdistanê yên ji ber hin boçûnên cûda ji hev qetiyabûn li ser yekîtî û hevgertinê destbi komcivînan dikin. Partiya Demokrata Kurdistana Îranê û Hizba Demokrata Kurdistanê li bajarê Koyê Herêma Başûrê Kurdistanê dest bi komcivînan dikin.

### Di kongreyê de biryara yekîtiyê

Rostem Cehangîriyê Endamê Polîtbûroya PDKI di derbarê danûstendinên di navbera wan û HDKI de berdewam dikin de agahî da rojnameya Basnûçe'yê. Cehangîrî anî ziman ku wan du sal berê di kongreya partiya xwe de biryar stendibûn ku ew ê arîşeyên di navbera xwe û HDK'ê de heyî çareser bikin û HDK'ê dîsa vehewînin nav PDK-Î'yê. Cehangerî proseya komcivînên PDK- Î'yê û HDK'ê wisa anî ziman: "Me sal pêş kongreyek li dar xist. Yanî Di 15emîn Kongreya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê de, me biryar girt ku hevalên me yên ku ji nav me cihêbûne dîsa bên û têkevin nava Hizba Demokrata Kurdistana Îranê. Em dixwazin binemala me dîsa bibe PDKI. Cehangîrî anî ziman ku beriya neh salan Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û ji perçeyên din e Kurdistanê jî gellek kesan bo ku PDKI perçe nebe hewldanên mezin dane. Lê partiya wan ji hev cûdabûyê û ji ber rewşa kurdan a li perçeyên din ê Kurdisatanê diqewimîn êrîşên DAIŞ'ê wan nêzîkî yekîtiyê dike.

### Bangawaziya yekîtiyê

Di axaftina xwe de Cehangîrî bal kişand ser yekîtiya partiyên Rojhilatê Kurdistanê û yekîtiya hemû partiyên Kurdistanê û eşkere kir ku hwcedariya kurdan bi navend û malbateke siyasî heye. Cehangirî wiha berdewam kir: " Em heta mala xwe ava nekin. Em ê beşdariyê li Kongreya Partiyên Rojhlatê Kurdistanê nekin. Eger em PDK-Î û HDK li hev nekin em ê beşdariye li tu bernameyan nakin. Eger me binemal dîsa avakir, di pêşeroje de em dikarin li ser Kongreya Rojhilata Kurdistanê jî bi partiyên Rojhilatê Kurdistanê re rûnên. Em di wê baweriyê de ne ku divê binemala nasnava kurd hebe. Em partiyên Rojhilatê Kurdistanê, hewceye em bereyekê ava bikin.

Cehangîri da zanîn ku êrîşên DAIŞ'ê kurd nêzikî hevdûkirinê lê belê ji ber nebûna yekgotarî ya partiyên siyasî yên çar perçeyên Kurdistanê Kongreya Neteweyî pêk nayê. Cehangîrî wiha berdewam kir: Êrîşên DAIŞ'ê li ser Kurdistanê hene. Ji mêjve ye, me hewl daye ku em Kongreya Neteweyî pêk bînin.Mixabin heta niha pêk nehatiye. Em weke Partiya Demokrata Kurdistana Îranê amadene xizmetê jiKongreya Neteweyî re bikin.

### Hıcrî û Ezîzî li li gel hev rûdinên

Mistefa Mewlûdiyê Cihgirê Serokê HDK'ê jî anî ziman ku zêdetirî du salay ye ku danûstendin di navbera wan û PDK-Î'yê hene û wan di vê serdemê de danûstendinên xwe zêde kirine wiha berdewam kir: "Du sala civînên me bihevre hene. Serdanên me niha zêdetir bûne. Ew serdana me dikin em serdana wan. Serokê Partiya Demokrata Kurdistana Îranê Mistefa Hicrî û Serokê Hizba Demokrata Kurdistanê Xalid Ezîzî li hev dicivin û qise dikin. Tu kêşeyên me bi hevre tunene. Herdû mektebên me yên siyasî rûdinên û bihevre qise dikin.”

### Ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê piştgirî

Mewlûdî her wisa anî ziman ku ew komcivînên xwe lı bajarê Koyê û Serokatiya Hikûmeta jî komcivînên wan kêfxweşin û piştgiriya wan dikin û wiha got: "Em li bajarê Koyê civînen xwe birêve dibin. Defterên me yên siyasî li wira nin. Serokatiya Hêremê Kurdistanê kêfxweş e ku partiyên Rojhilat lihev dikin û hev digrin.”

### 'Rewşa Rojava, Başûr û Bakûr tesîrê li Rojhilat jî dike'

Mistefa Mewlûdî berxwedana hêzen kurd ê li eniyên şer jî bibîrxist û anî ziman ku rewşa Rojhilata Navîn û erîşên DAIŞ'ê yên li ser Kurdistanê jî bûne hokarên yekîtiya partiyên Rojhilatê Kurdistanê. Mewlûdî wiha berdewam kir: "Êrîş û tesîra rewşa kurdan bûye sedem ku partiyen Rojhilatê Kurdistanê lihev rûnên û yekitiyê saz bikin. Lewre li Bakur niha proseya diyalogê pêkhatiye û li Rojava jî rêveberiyên kurd ava dibin û li Başûr jî kurd ber bi proseya dewletbûnê ve diçin. Vê rewşê tesîr li kurdên Rojhilat jî kiriye.”

### Kurd dixwazin bibin xwedî helwest

Çalakiyê siyasî û rojnamenûs Badih Sineyî jî li ser komcivîn û danûstendinên PDK- Î'yê û HDK'ê rawestiya û anî ziman ku partiyên PDK'ê û HDK'ê dev ji fikrên çepgerî û gotarên nerast berdidin û êdî rewşa kurdan û rewşa Rojhilata Navîn dibînin û ew jî dikevin nav lêgerînên siyasî û vê yekê jî bi gftugoyên yekitiyê dest pê kiriye. Sineyî wiha derbirî: "Li Rojhilata Navîn gellek tişt êdî diguherin. Diyar e ku ew ê awayên rêveberiyê jî biguherin. Ev yek dê tesîrê li ser Îranê jî bike. Weke mînak qiymetê neftê dikeve. Beriya bi şeş mehan qiymetê neftê gellekî zêde bû. Kurd jî niha di rewşeke awarte re derbas dibin û dixwazin bibin xwedî helwestek.”



# Bajarê Serhedî Îdir

**Welat Baz**

Îdir di nav hêlîlarên 42 û 44 û di nav hêlîpanên 39 û 41an de cîh digre. Îdir, ji bakûr ve ji alî çemê Erezê û ji alî Ermenistanê, ji rojavayê bakûr ve ji alî bajarê Qersê, ji başûr ve jî, ji alî xaka Agirî ve hatiye dorpêçan. Pîvana xaka bajarê Îdirê tevî navçeyan nêzî 4 hezar km² ye.Îdir cîranê Çiyayê Agirî ye. Çiyayê Agirî an jî Araradê Mezin ku 5123 metre bilind e, 25 km li başûrê bajarê Îdirê dikeve û Bazîd û Îdirê ji hev diqetîne. Çiyayên Agirî ê mezin û ê biçûk di nav sînorên Navça Başan de dimîne ku ew bi Îdirê ve girêdayî ye.

Dîsa li başûrê Îdirê li kêleka Çiyayê Agirî, Çiyayê Zor, li rojavê yê bajêr Çiyayê Periyan û Çiyayê Ziyaretê cîh digre. Elegez û Tendûrek jî dora Deşta Rewanê pêçane.Geliyê Erezê ku ji bajarê Erziromê destpêdike û heta derya Xazarê diherike, ji nav Deşta Rewanê derbas dibe. An jî bi gotinek din, Deşta Rewanê li nav Geliyê Erezê dikeve. Rûyê vê deştê di demên kevn de ji lehiyên madenî ê wolqana Agirî yê hatiye girtin. Ji vê sedemê xaka Îdirê bi xêrûbêr e. Ji ber taybetiyên xwe yê jeolojîk li Deşta Îdirê hemû cûrên kiştûkalê tên kirin. Deşt ji alî Çemê Erezê ve tê avdan û berhemên wek pembû, birinc, silqa şekir, genim, ceh û gelek cûrên fêkiyan dide. Pîvana firehbûna deştê 650 km² ye. Ji ber vê yekê deşt li heremê devera herî girîng e. Ji ber girîngiya kiştûkalê, li bajêr di salên kevn de dibistaneke bilind a kiştûkalê hatiye vekirin. Li bajêr ji bo depokirina genim û berhemên din ofîsekî heye.

**Rêvebirî**

Îdir li gor pergala rêvebiriyê parêzgeh e. Şaredariya bajêr di sala 1924'an de hatiye damezirandin. Navçeyên Qulp, Qereqoyin û Başan bi bajêr ve girêdayî ne. Herwiha 156 gund û çend xopanên Îdirê jî hene. Nîfûsa parezgeha Îdirê nêzî 175 hezar e. Demoxrafya bajêr tevlihev e. Piraniya rûniştvanên bajêr kurd in. Kurdên Îdirê ji mezheba sunî ne û bi zarava kurmancî diaxifin. Ji bilî kurdan, azerî û terekeme jî li heremê dijîn. Azeriyên bajêr ji mezheba şiî ne. Wek navenda bajêr li gelek gundan jî Azerî û Kurd tevî hev dijîn. Gelek malbatên kurd û azerî bi rêyên xinamtî û kîrîvatî gihîştine hevûdû.

**Dîrok**

Dîroka bajarê Îdirê, wek hemû deverên Kurdistanê gelek kevn e. Bajar ji hukumdarekî navê xwe stendiye. Kurd ji bajêr re 'Îdir', azerî jî 'Ixdir' dibêjin. Li gor dîroka niviskî, berî zayînê li herema Îdir û Serhedê şaristaniya ku yekem car rêç hiştiye ûrarto ne. Di sala 646'an de saka û kîmeran, êrişên heremê kirin û desthilatiya Ûrartoyan şikestin. Di sedsala 600'an de Med ketin heremê. Desthilatiya medan heta dema Qîros ê persî dom kir. Paşê li heremê bi dorê mekedonî, selokîdî, romayî, arsakî û sasaniyan hukum ajot. Xelîfe Emer di sala 624'an de di şerê Nîhawend de sasaniyan têkbir û Îdir û derûdorê xist bin bandora erebên musluman. Di dema emevî û abbasiyan de jî li ser desthilatiya heremê di nav Ereb û Bîzansiyan de her tim şer derdiket. Di sala 1064'an de jî selçûqî ketin Serheda Kurdistanê û Îdir û derûdorê bidestxistin. Bajar heta salên 1239'an di bin destê selçûqiyan de ma. Di vê salê de Moxolan ku heremê dagirkirin ketin Îdirê jî û bajêr xerakirin. Piştî vekişandina Moxolan, Îdir di bin rêvebiriya begên Kurd de, lê din bandora siyasî a sefewiyan de ma. Di sala 1514'an de ku Osmanî û Sefewiyan li deşta Çaldiranê şer kirin û osmanî bi alîkariya kurdan biser ketin, Îdir jî ket bin destê osmaniyan. Di vê pêvajoyê de Şêx Îdrîsê Bedlîsî, begên Kurd ê herema Serhedê qayil kiribû ku ew daxilê Osmaniyan bibin. Îdir û bi gelemperi





Serheda Kurdistanê piştî salên 1700'an ku di nav osmanî, rûs û farisan de şerên dûrdirêj derket, car caran di nav van dewletan de dest guhert. Wek mînak di sala 1737'an de li gor peymana Îstenbolê, Îdir para sefewiyan ket. Lê deh sal şûnde osmaniyan cardin bajêr ji wan stendin. Di sala 1878'an de piştî şereki, li gor peymana Ayestefanos, Îdir 40 sal ji rûsan re ma.



Di dema şerê cîhanê yê yekem de ku dewleta osmanî biryara qira ermeniyan da, li Îdirê jî qetlîaman kir. Piştî ku Îdir di sala 1919'an de ji hêzên ermeni hat stendin, gelê ermenî ji heremê koçkir. Tevî ermeniyan, bi hezaran kurdên ezdî jî berê xwe dan Qafkasan. Di pêvajoya şerê cîhanê yê yekem de ku dewleta osmanî têk çû, Serheda Kurdistanê, herwiha Îdir jî di bin dagira artêşa rûs de ma. Piştî ku li Rûsya Bolşewîkan desthilatiyê girtin, di sala 1917'an de artêşa xwe ji Kurdistanê vekişandin. Di vê navberê de hêzên ermenî ketin heremê û heta sala 1919'an Îdir û derûdorê di destê xwe de girtin. Piştî vekişandina artêşa rûs, leşkerên osmanî carek din ketin Serhedê û Îdirê ji ermeniyan sitendin. Li gor peymanên ku di salên pêş de hatin îmzekirin jî, herem ji komara tirk re ma. Di encam de artêşa tirk heremê ji ermenî û kurdên ezdî pakij kir. Piştî avabûnê rêvebirên komara tirk, ji bo astengkirina liva netewî, li Îdir û hemû Serhedê tedbîrên mezin girtin. Ji bo asîmîlasyonê dibistanan vekirin, ji bo sehêtiya heremê tesîsên leşkerî avakirin û li ser gundiyan zextan kirin. Ji bo xerakirina tevna demoxafîk, koçerên azerî, terekeme û qerepapaxan li nav Kurdan bicîh kirin. Ji aliyekî din ve jî koçberkirina kurdan teşwîk kirin. Lê van tedbîran dîsa jî welatparêziya kurdên Îdirê neqedand. Di salên 1930'an de ku serhildana Çiyayê Araradê destpêkir, ji Îdirê jî gelek alîkarî girt. Eşîr û gundiyên Îdirê salên dirêj, ji erzak temînkirinê, heta şandina şerwanan, pêdiviyên serhildêran temîn kirin. Piştî salên 1960'an ku li Kurdistanê pêleke nûh a welatparêziyê da, bandora xwe li ser vê heremê jî kir. Xortên Îdirî jî ku di van salan de li metropolan dixwendin, di nav tevgera welatparêz de bûn.

# Vejena Kurdistanê dikare wê bike dewleteke sereke

**İsmail Yıldız**

Pisporê Biyokîmyaya Cemserê Prof. Murat Ardelan diyar kir ku ji roja serxwebûn hatiye rojevê vir ve, bi vê mijarê re girêdayî, xalên çavkaniyên wek petrol, gaz û ava Kurdistanê jî her balê dikêşînin ser xwe û got: "Ev dewlemendiyên Kurdistanê, bi kapasîteyên xwe, dikarin wê bigihînin pileya welatên pola yekemîn.

Peywirdarê Hînkarî yê Zanîngeha Zanist û Teknolojî ya Norwêc(NTNU) Erdelan, hişyarî da ku ger ev dewlemendiyên ku şayanî gotinê ne, ji bo hilberîna nirxên cihê yên aborî neyêne bikaranîn, piştî bidawîbûna serdema sotemeniya fosîl, wê Kurdistan dîsa di nav toz û dûmanê de êşikên mirinê bikêşîne. Erdelan, ji alî pêdiviyên bazarê ve, alternatîfa bi ser Rojava ve gihandina petrola Kurdistanê ya Derya Sipî wek alternatîfa bêhempa nirxand û got: "Mixabin ku ji ber riwangeyên siyasî yên cihê ev alternatîf niha ne pêkan e" Em bi Prof. Dr. Erdelan ku li ser guherîna îqlîm û bandora wê ya li ser pêvajoyên globalî û molekulerî dixebite re li ser guherîna îqlîm, siberoja sotemeniyên fosîl, neft û gaza Kurdistanê û bandora wan a li ser serxwebûnê peyivîn.

**Guherîna avûhewayê, cemser, guherînên di zeryayan de mijarên ku dûrî Kurdistanê xuya dikin. Kîjan sedem bûn hincet ku tu li ser van mijaran hûr bibî?**

Kurd neteweyeke qelebalix e, di nav kurdan de kesên ku dikarin li ser her mijarê hûr bibin derdikebin. Di diyarkirina pîşeya min de plansaziyeke pir grîng tune bû. Bêguman di bijartina vê pîşeya min de rola rastlêhatinan pir heye. Dibe ku çîroka min jî ji xwendina pirtûkeke ji dema xwendekariya dibistana navîn, dima ku ez berpirsê pirtûkxaneyê bûm destpê kiribe. Fridtjof Nansen û Roald Amundsen du kaşifên cemserê yên ji sedsala 19. û 20. in û her dû jî Norwêcî ne. Ez wa dizanim ku hin ajoyên ku ji vê pirtûkê gihîştin min, berê rêya min dane Norwêcê. Norwêcî yek ji neteweyên Pioneer ên ku lêkolînên cemserê pêk tînin e. Li gor gelheya xwe ya 5 milyonî, di vê mijarê de neteweyeke pir afirîner e. Ji ber van sedeman ez dikarim bêjim ev rêya min hilbijarteyeke baş e. (Nansen, kaşifeke cemserî û di heman demê de zanistek ku di warê lêkolînên derya û cemserê de daneyên grîng bi dest xistiye. Lê belê aliyekî wî yê ku me pir eleqedar dike heye. Ji ber xebatên xwe yên parastina qurbaniyên jenosîda ermenên anatolyayê ku di dema şerê dinyayê yê yekem û piştî vî şerî de ji ber projeya homojenkirina cemiyeta Îttahat û Terakkî şikestineke mezin jiyane û pêşekvaniya ramana guherînên din ên demografîk ên wek cîguhertina Heleniyên Anatolyayê ya bi tirkên rojavayê Trakya û gravên Stenbolê re, her wiha ji ber kesek e, ku bi çalakî û xebatên xwe yên bi pêvajoyên bûyerên dîroka nêzîk ên erdnîgariya me re têkildar in xelata aştiyê ya Nobelê wergirtî ye.



> Ger ku mirov hilberîndarê berhemek jiyannewer be, yên ku mehkûmê vê bûjenê de naxwazin serêk we biêşe û gellek dostên mirov çê dibin. Ger ku bi vê hilberînê re mirov civaka xwe jî bi pêş bixe û di nav xwe de hevsengiyekê pêk bîne, gotina mirov a li ser dinyayê bi tîntir dibe. Lê divê em avê ji bîr nekin.

**Li Kurdistanê, li ser ekolojiyê pir zêde têgeh têne bikaranîn. Civaka ekolojîk û hwd. Gelo tu di nav pratîka rojane ya jiyan û siyasetê û van têgehan de hemahengiyekê dibînî?**

Li bakur, gellek têgeh, bêyî ku danasên wan bêne kirin têne bikaranîn. "Civaka ekolojîk", "Aşitî", "Dewlet" çend ji wan têgehan in. Bi kurtasî, bikaranîna van têgehên ku divê danasên wan baş bêne kirin, min bi guman dike ku manîpolasyon tê kirin. Mijarên ekolojîk û hestiyariyên hawirê, bi taybetî bala ciwan û jinên ku bi awayekî rewa, dixwazin tîn li her aliyên jiyanê bikin dikêşîne. Ciwan, ji bo xweşkirina dinyayê û jin jî, ta radeyekê ji bo ajoyên xwe yên veşartî yên domdar, di van mijaran de bêtir hestiyar in. Ev tiştekî baş e. Lê aliyê vê yê xerab ev e; li ser vê mijarê ji bo nirxandinên baş bêne kirin pêdivî bi gellek zanyariyan heye lê belê ev mijar bêtir bi rengên olî û bîrdozî têne nirxandin. Ger ku angaştên "Civaka Ekolojîk", bêyî danas û rast watekirinan bikebin nav bernameyên siyasî, şayanî nirxdaniyê nayêne dîtin. Ji bo kurdan, pirsgirêkên grîngtir ku divê bêne çareserkirin hene. Ji bo pêkanîna karûbarên ekolojî û hawirê, divê mirov xwedî vîneke ku dikare dînamîkên bingehîn birêve bibe. Pirsgirêkên din ên kurdan ên ku divê tafilê bêne çareserkirin hene, ji bo meşandina karûbarên ekolojî û hawirê, divê hêmanên birêvebiran jiyana mirov di destê mirov de be. Bi taybetî li bakur, em dizanin ku kurd hê jî mafên xwe yên bimgehîn bi dest nexistine. Jixwe ji ber vê yekê em her tim kurdîtiya xwe derdixin pêş. Di rewşeke ku em nikarin qadên herî grîng ên jiyanên xwe kontrol bikin de, mirov bi mijarên mezin û berfireh ên wek; ekolojî û hawirê bilîn bibe, ev ne karê aqil e. Jixwe di vê mijarê de em xwedî çand, sermaye û binesaziyekê ne.

**Tu bi çikandina ala Kurdistan li Antarktîkayê têyî nasîn?..**

Ez dixwazim vê mijarê zelal bikim. Ez ne ew kesim ku al di dest de li vî alî li wî alî diçikîne. Ez naxwazim ku alên neteweyî di xebatên zanistî de cih bigirin. Xebatên zanistî divê xizmeta hemû mirovahiyê bikin. Ger ku her netewe, xebatên xwe yên zanistî bi ajoya pêşvebirina şaristaniya hevpar a mirovahiyê bigoncivînin ez ê bêtir kêfxweş bibim. Lê belê em baş dizanin ku jiyana rasteqîn ne li gor xeyalên me û ne bi ajoyên ku em daxwaz dikin dimeşe. Jiyan, bi yasayên dirinde dimeşe. Di gellek mijaran de em di nav pêşbirkeke hovane de ne. Neferên neteweyan bêçar in ku bikebin nav vê pêşbirka hovane. Dema mirov vê rewşê dibîne, di her qada jiyanê de mirov dixwaze bêje, "Em jî hene û divê hun me kurdan qebûl bikin" Al, semboleke bê ziman a rewşên bi vî awayî ye. Ji ber vê yekê divê carcaran bê bikaranîn. Kurd, li hember nîjadperestên brûtal û ji rêzê yên ku mafên wan ji dest wan derxistine, nimaniya nîjadperestiya vîtal a ku bi ser daxwazên egalîter bilind bûne dikin. Dive vê yekê hesantir derbirînin. Nîjadperestiya vîtal an jî kêmtirîn nîjadperestiya ku ji bo jiyanê pêdivî pe heye, alaveke rasteqîn an jî qada ku hin pêdiviyên ji bo hebûna ve dinyaya har pêwîstin e. Lê belê ev ne ew rêbaze ku hun her tim al an jî taybetiyên xwe yên neteweyî di çavên mirovan de rakin. Ev kurteya diyarkirina pirsa 'Gelo dema hun alê dihejînin, bi têgihîştina cîhaneke çawa dihejînin?' an jî 'Hun cîhaneke çawa dixwazin?' Ala kurd ya ku min li Antarktîkayê çikand kirtikeke piçûk a peyama ji bo her kesên ku kurdan di welatên wan de jî diçewisînin e. "Hewl nedin ku me biçewisînin, ev ne pêkan e. Di her qada jiyanê de, di cihên ku nayêne hişê we em ê derkebin pêşberî we. Ala Antarktîkayê rika neteweyî ya kurd a rewa temsîl dike. Bêguman, em jî di nav malbata mirovahiyê de di serpêhatiya şaristaniyê de hene. Bêguman, piştî em bêjin "Em jî di nav malbata mirovahiyê de, di çîroka şaristaniyê de hene" divê em Antarktîka, Arstîk an jî qadên hevpar ên dinyayê weke mekanên hevpar ên mirovahiyê bibînin. Ev şerta makî ya lûtkeya şaristanbûyînê ye.



**Bandora xerckirina sotemeniyên fosîl a li ser îqlîmê çawa ye, rêbazên rawestandin an jî kêmkirina guherîna îqlîmê çi nin?**

Di demeke nêzîk de wê kurd bibin xwedî dewleteke ku sotemeniya fosîl hildiberîne. Yanî wê di mijara globaliyê de berpirsyariya biryardar û hemwelatiyên vê dewletê jî çê bibe. Ji bêçarî be jî ew ê hewl bidin ku pirsgirêkên ji sotemeniyên ku pereyan pê qezenc dikin der dibin çareser bikin. Helbet, hewce nake ku em ji niha ve erka berpirsyariyeke mezin hilgirin ser xwe. Kes nikare bêje ku berpirsyariya kurdan di kombûna $CO_2$ ya asîman de pir heye, lê belê di demeke nêzîk de wê bibin yek ji berpirsyarên sereke. Ji vî alî ve, di vê mijarê de pêdiviya me bi zanyarbûyînê heye. Weke tê zanîn, di nav gazên serayî de $CO_2$, di warê molekulî de ya herî dewlemend nîne lê belê, gaza ku bi çalakiyên mirovan di asîman de herî bi lez kom dibe ye. Hingî ku gaza $CO_2$ di asîman de kom dibe, ji bo dinyayê bandoreke dîwarî pêk tîne û gazan di asîman de kom dike. $CO_2$'ya ku radyasyona ekektromanyetîk a ku bi enerjiyeke giran a ku ji rojê tê bêjing dike radyasyona derîsor a ku ji bo sar bibe dinya ew belav dike bêjing nake û nagire û bi vî awayî dinya germ dibe û ji ber germbûnê, hemû mekanîzmayên fîzîkî, kîmyewî û biyolojîk ên ku pergala îqlîmê pêk tînin û pêlên dêwasa yên zeryayan, qeşayên cemser û serê çiyayên bilind, tevgerên avan bi awayekî dramatîk diguherin. Hêmana bingehîn a ssedemê van guherîn an bikaranîna enerjiya fosîl e. Çavkaniyên herî grîng ên ku bandor li vê guherînê dike yan jî bandor jê distîne enerjiya fosîl û av e û ev her dû bûjen stratejîk jî mîrateyên herî grîng ên Kurdistanê ne. Ji ber vê yekê divê kurd, hem di derbarê avê û hem jî di derbarê petrolê de bibin pispor. Di nav van şert û mercan de mirov dikare bêje ku li rojhilata navîn, wê av bibe mijara herî grîng û stratejîk.



**Li gel vê dewlemendiya Kurdistanê ku ji bo yekîtiya netewî dikare bibe çekeke mezin, derzên ramanî yên di nav perçeyan de wê bandoreke çawa li siberoja kurdan bike?**

Li gel ku Bakurê Kurdistanê, wek şarezayiya mirovî xwedî potansiyeleke mezin e jî, çanda siyaseta kurd a bakur di nav şayiyên giran de xwe şayanî pêkeniyê dibîne. Di warê derfet û hêzbûyînê de nikare bi başûr re bikeve pêgavê. Divê ji vê rêya xeyalî derkebe lê ji ber ku wek girseyî di vê rêyê de ye, xuya ye wê bi hêsanî dernekebe. Li bakur, girseyeke dînamîk ku li gel xeteriyên mezin û bi bergîdana xwîna gellek keç û kurên xwe ber bi netewebûnê ve çû heye. Lê mixabin 10 salên dawî, bi destê kadroyên siyaseta serdest a kurd û tirkên ku bi kelecan piştgirî didine vê siyasetê, kurd ji projeya netewebûnê têne dûrxistin. Potansiyela bakur hê jî zêde ye, lê belê şiyaniya wê ya kadro û dezgehî ya ku wê karibe vê potansiyelê bi rê ve bibe tune ye û ev ramana serdest, di bin nîrê ramanên tirkên ku dest ji manîpulekirina kurdan bernadin de ye. Başûr berovajiyê Bakur, wek potansiyela mirovî di asteke baş de nebe jî, lê bi sazûmaniya xwe ya polîtîk û meyldariya xwe ya aborî dide xuyakirin ku wê di bazara enerjiyê de bibin xwedî gotin..



**Tê gotin ku potansiyeleke dewlemend a gaza zinarî heye. Gaza zinarî çi ye û bi rastî jî Kurdistan ji alî gaza zinarî ve dewlemend e?**

Em dîsa derketin derveyî frawaniya pisporiya min. Pêşi ez bejim ku nêrînên min ên di vê bareyê de wê nêrînên amatorî bin. Di vê mijarê de zanyariyên min tune ne. Divê kurd, bazarên enerjiyê û bandora polîtîk a meyldariyên vê mijarê ji nêz ve bişopînin. Di derbarê vê mijarê de, çend roj berê, di çapemeniya kurd de min nirxandineke kin lê xweş a rewşenbîrekî kurd ê giranbûha Huseyîn Pîran xwend. Divê herkes vê nirxandinê bixwîne. Di nirxandina xwe de danasa gaza zinarî nehatibû kirin lê belê, li ser sedem û egeriyên ji % 50 kêmbûna bûhayê petrolê ku bûye hinceta lêgerînên enerjiyên alternatîf, mirov arasteyî ramandin û bêtir xwendinê dike. Gotar an jî nivîseke ku ji pêşkêşkirina hin daneyan bêtir mirov arasteyî ramandin û dozînê û bike, ew şayanî xwendinê ye. Ger ku em bêne ser pirsa 'Gaza zinarî çi ye?' Gaza zinarî; Weke sotemeniyên fosil ên din, karbon hîdrateke gewherî ya bîyolojîk ku di formasyonên jeolojîk de asê bûye û bi pesto û germahiyeke zêde weke metamorfîk guheriye. Bararanîna vê gazê pir bûha ye. Bi hin rêbazên nû û hin erzantir tê hilberîn lê bele ji ber daketina nirxa petrolê lêgerînên hilberîna gazên bi vî rengî kêm bûn.



# Yavûz û mîrên Bazîdê

Li ser Bazidiyên li Meraşê heta niha gelek pirtûk û lêkolîn jî hatine amadewkirin. Her wisa li ser bûyerên malbatê gelek helbest û stran jî hatine sêwirandin. Di sedsala 20'an de di nav vê malbatê de êdî şopa kurdbûna wan windabûye. Yekî ji malbatê ê bi navê Bekir Sami Bayazit ku derbarê dîroka malbata xwe de di sala 1998'an de pirtukek bi sernavê 'Kahramanmaraş'ta Bayazıtoğulları' a ku ji 440 rûpelan pêktê nivîsiye tê de dudilî dibe. Her çiqas ew dinivîse ku malbata wan ji Bazîdê hatiye û ew nizane ka ew wê demê ji kîjan eşîrê bûne û ne dibêje ku pêşiyên wan kurd bûn û ne jî dibêje ku ew ne kurd bûn.



Mehmet Gültekin

Dema sultanê osmanî Yavuz bona şerê Safeviyan bi rêket û ji Erziromê derbas bû ferm,anrewayê bi navê Elî Begê kûrê Şehsiwar pêşde xwe gihand kela Bazîdê ku mîrên herêmê bona alîkariya Osmaniyan serxewt bike. Yavuz û artêşa wî di tebaxa sala 1514 an de gihîştin vê herêmê û di quntara bajêr de rawestiyan. Li wir desthilatdar û giregirên Bazîdê pêşwaziya wî kirin û sozê alîkariyan dane wî. Goreyî hin çavkaniyan ew bi hezaran şerkarên xwe ve beşdsarî şer bûne û ji aliyê hewcedariyên wek xwarinan de jî gelekî alîkariya Osmaniyan kirine.

Bazîd wê demê ji Xorasanê heta Makoyê wek desthilatdariyeke xweser girêdayî Îranê bû. Çewa İsmet Alpaslan û Mustafa Bilgili jî di pirtûkên xwe yên derbarê herêma Agirî de destnîşan dikin, serwerên herêmê kurd bûn. Ev cara pêşîn bû ku osmanî dihatin vê herêmê û têkiliya wan û kurdên vê herêm çêdibû.

Piştî hatina Yavuz û artêşa osmanî ew şerê eyan di 23 yê tebaxa sala 1514 an de li  Çaldêranê qewimî. Ev war deşteke li wê bilindciyê bû ku kurd wê ji berêv de wek Ebexe û bajarokê navenda wê jî wek Bazîdaxa binavdikin. Ebexe ango bi navkirina îraniyan Çaldêran îro di navbera Wan û Bazîdê de û li ser sînorê herdû dewletan dimîne.

Wek Bazidiyan gelek mîrên kurdan beşdarî vî şerî bûn, hin alîkarê Yavuz bûn, hin jî yê Şah İsmaîlê Safevî. Herdu serweran jî di dema amadekariya şerê li dijî hevdu de hemû derfetên heyî bi kar anî bûn ku mîrên kurdan û şerkarên wan ji aliyê xwe de beşdarî vî şerî bikin. Hin mîrên kurdan yên bakûr û rojavayê Kurdistanê piştgirîya Osmaniyan kirin ji ber ku Şah Îsmaîl êriş dibir ser desthilatdariyên wan û parek ji mîrên wan yên ku bona lihevkirinê çûbûn li bal wî hatibûn zinadan kirin.

Mebesta herdu dewletên zorker û talanbir jî di vî şerî de tenê bidestxistina hukimdariyeke berfirehtir û xirttir ya di rohilata navîn de bû, beşdarbûna wan kurdên ji herdu aliyan jî bi piranî ji bo parastina rewşa xwe û berdewamiya desthilatdariyên xwe bû, ne ku ji bo





şereke mezhebî. Jixwe piraniya kurdan yên ku li herdu aliyan de şer dikirin kurdên sunî bûn. Bi ser de piştî şkestina hêzên Şah İsmaîl Yavûz gelek kurdên sunî li aliyê Îranê yên ku piştgiriya Şah kiribûn li ser riya xwe ya berbi Tewrêzê qir kir.

Em warin têkiliya Yavuz Sultan Selîm û mîrên Bazîdê. Dema serbazên osmanî piştî vî şerî ji Yavuz re bi pesn û hejmekarî saluxê jîrektî, şerkarî û alîkariyên mîrên Bazîdê dan, Yavuz bangî mîrên Bazîdê dike û pêşniyar dike ku parek ji mîr û şerkarên Bazîdê bi wî re warin roavayê û ew ê desthilatdariya herêma Meraşê bispêre wan. Ji mîrên Bazîdê Elî Îskender Begê pêşniyariya Yavuz Sultan qebûl kiriye û tev mirovên xwe koçberî herêma Meraşê bûye.

Li Meraş û li hêrêmên li hawirdor desthilatdariyek bir navê dewleta Dulqadirlî hebû ku serwerê wê ê wê demê Alauddevle ê bapîrê Yavuz bû, ango keça wî jina Sultan Bayazit û diya Yavuz bû. Yavuz dema hukimdariya bavê xwe de fermanrewayê Trabzonê bû, wî xwe xurt kir û bi leşkerên xwe ve ajot ser bavê xwe ku desthilatdariya dewleta osmanî bidest bixe. Bona pêşîlêgirtina şerê bav û kûr qasidan peymanek bi herduyan dan qebûl kirin ku piştî Bayazit ne birayên din lê Yavuz bibe xelefê wî. Lê dîsa jî Yavuz bi dek û diolavan bavê xwe Sultan Bayazid di behrê de da xeniqandin û dûre jî bi birayên xwe re ên ku serweriya wî qebûl nedikirin şer kir û hersê birayên xwe jî da kuştin. Alauddevle ê serwerê dewleta Dulqadirlî li Meraşê, ango kalikê Yavuz jî ev tevgerên wî nedieciband û li dijî Yavuz piştgiriya sulatanên Memlukiyan ên li Misirê dikir yên ku dijminê Yavuz bûn. Ji ber ku Osmaniyan amadekariya sefereke li ser Misirê dikrin bona Yavuz hewce bû, wekî beriya wê seferê desthilatdariya Dulqadiriyan ji holê rake.

Di sala 1515'an de bi ser daxwaza Yavuz mîr û şerkarên Bazîdî bi alîkariya Elî Begê Şehsîwar û Sinan Paşa êriş birin ser desthilatdariya Allauddevle. Piştî şereke dijwar wan zora Dulqadiriya birin û kalikê Yavuz tev çar xalên wî kuştin. Bi ser vê parek ji axa herêmê û hin peywirên girîng ên di fermanrewatiya herêmê de bi giranî ket destê wan. Elî Îskender Beg bûbû serokê lêşkerên herêmê û piştî wî jî kûrê wî ê bi navê Ebvdillah ev erk berdewam kir. Navê taxa ku giregirên Bazidiyan tê de diman Bayazıtlî Mahallesi bû. Lê belê wek çavakaniyên Osmaniyan destnîşan dikin piştî van bûyeran hin bi sedsalan car carina dijminatî, şer û doz di navbera wan û pismamên Alauddevle de berdewam kiriye.

Wek nivîskarê lêkolîner Mehmet Bayrak bal kişandiye ser, di dema piştî şerê dijî Dulqadiriyan de şairekî bi navê Şukri-î Bitlîsî ê ku li bal Elî Begê Şehsiwar wek katip kar dikir û pirtûkek bi navê "Selimname" nivîsandibû, tê de di hin helbestên xwe de kurdî jî tê de 8 ziman bi kar anîbû. Şukri-î Bitlisî ku bi pesn kurdbûyîna xwe jî tê de tîne ziman di pirtûkê de dûr û dirêj qala serhatiyên Yavuz dike. Dema ew salixê bûyerên jorîn jî dide ango bi cîh kirina Bazîdiyan li Meraşêr wek bedelê hilweşandina serweriya Alaûddevle ê Dulqadirî bi vê sernivîsê destnîuşan dike:

*“Memâlik bahşkerden-i Selim Han be leşkeryan ve umerâ-yı Kurdistan”*

Yavuz bi kuştina bav û birayên xwe li ser textê osmanî runişt û bi kuştina kalik û xalên xwe bi destê Bazidiyan jî gihîşt mirazê xwe ê ji holêrakirina dijberên xwe yên navxwe, Bazîdî jî bi vî awayî bi kuştina kalik û xalên wî desthilatdariya Meraşê bi dest xistine.




# Kurdolog û zimanzanê sedsalê

**Abdulhekim Günaydın**

Şaristanî, çand, huner û wêjeya gel û miletan; bi rewşenbîr û zimanzanan pêş dikeve. Perwerdeya zanistî ya li ser ziman, van hêmanan dixe dirûvekî formel û standart. Xelîl Xeyalî yek ji wan zimanzanên kurd e ku wekî Ferdinand de Saussure, Hermann Paul, Noam Chomsky û hwd. pir girîngî daye ziman.

Xeyalî, di dawiya têkçûna Dewleta Osmanî de bi pêwistiya rêziman û alfabeya Kurdî hesiyaye û ketiye nav hewldanê. Li ser zimanzaniya kurdî, xebateke giranbuha meşandiye. Lewra dizanibû ku ziman "mora qedera mirovan" e û heçî sûretê mirovahiyê ye, di reng û rûyê ziman de xweşikahiya xwe dide der.

Xelil Xeyalî, li gundê Hurmizê yê ku bi ser navçeya Bedlîsê, Motkanê ve ye hatiye dinê. Ji eşîra Modan ji malbata Zenderiyane û Dimilî ye. Zender, herwiha wekî paşnavê malbata wî û navê herêmê tê zanîn. Xelîl Xeyalî, berî ku dibistanê li Bedlîs û Amedê biqedîne, li medreseyên Kurdistanê li cem alim û muderisan jî perwerde dîtiye. Di sala 1880'an de cara pêşî li Bedlîsê di Midûriyeta **Aşar ve Ağnam** de wekî tomarkerê belgeyan dest bi kar kiriye. Li Sêrt, Bedlîs, û Enqereyê di karên fermî yên Dewleta Osmanî de xebitiye. Di destpêka 1900'î derbasî Stenbolê bûye û herî dawî di sala 1909'an de ji hesabdariya Dibistana Bilind a Çandiniyê ya Halkalı teqawîd bûye.

### Elîfbêya Xelîl Xeyalî

Xelîl Xeyalî, ji xeyrî zaravayê dimilî û kurmancî, bi osmanî, farisî, erebî û frensî dizanibû. Elîfbêya herî ewil a zimanê Kurdî ku tê zanîn, elîfbêya kurmancî wî çêkiriye. Herwiha li gorî agahiyan wî ferheng, rastnivîs û rêzimana kurdî jî amade kiriye. Di dîroka zimanê kurdî de kesê ku cara ewil bi tîpên erebî ji bo kurdî elîfbê amade kiriye Xelîl Xeyalî ye. Tevî van, ew nirxandinên wî yên kurdî ku di weşanên cûrbecûr ên kurdî de derketine, di nav mînakên ewil ên nivîsa pêxşanî ya zaravayê kurmancî de tên hesibandin. Xeyalî, yek ji wan kesê pêşî ye ku ji tirkî wergera kurdî kiriye. Berhema wî ya navdar "Elîfbêya Kurmancî" ji hêla Kurdîzade Ehmed Ramîz ve di sala 1325'ê hicrî, 1909'ê mîladî de belav bûye.

**Elîfbêya Xeyalî ji 34 tîpan pêk tê. Ev tîp digel latîniya wan ev in:**

| | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|
| ا =Ab | ب =Bb | پ=Pp | ت =Tt | ث =Ss | ج = Cc | چ=Çç |
| ح = Hh | خ =Xx | د =Dd | ذ =Zz | ر =Rr | ز =Zz | ژ =Jj |
| س =Ss | ش =Şş | ص =Ss | ض =Dd | ط =Tt | ظ =Zz | ع =' |
| غ =Ğğ | ف =Ff | ڤ =Vv | ق =Qq | ك =Kk | گ =Gg | ل =Ll |
| م =Mm | ن =Nn | و =Ww | ه =Hh | لا =La | ي =Yy | |

### Rola Xeyalî di komeleyên heyama Osmanî de

Xelîl Xeyalî, di sala 1908'an de li Stenbolê di damezrandina komeleyên bi navê **Kurd Tea'vun û Teraqî** û **Kurd Neşrî Me'arif** de, bi Seyîd Ebdulqadir, Emîn Elî Bedîrxan, Seîdê Kurdî, Dr.Abdullah Cevdet û hwd. re cih digre û dibê endamê komeleyan. Ji bo perwerdekirina zarokên kurdan bi zimanê kurdî, di sala 1910'an de ji aliyê komeleya Kurd Neşrî Me'arif ve li Çemberlîtaşê yekemîn dibistana kurdî bi navê **Kurd Nimûne İbtidaîsi-Meşrutiyet** hatiye vekirin. Xelîl Xeyalî di vekirina vê dibistanê de roleke mezin lîstiye. Di vê dibistanê de li gor elîfbêya wî ku me li jor behs kir perwerde bi zimanê kurdî hatiye dayin.

Dîsa di sala 1912'an de li Stenbolê ji aliyê hinek xwendevanên kurd yên wekî Ekrem û Qedrî Cemîlpaşa, Nûrî Dêrsimî, Dr. Fuat, Şefîq Arwasî û hwd. ve komeleya Hêvî hatiye damezirandin û komele heta Şerê Cihanê yê yekem dewam xebat kiriye. Xelîl Xeyalî di damezrandina vê komeleyê de jî rolekî girîng lîstiye. Armanca herî girîng ya vê komeleyê hêsankirina xwendin û nivîsandina bi zimanê kurdî bû.

### Nivîs û zimanparêziya Xelîl Xeyalî

Wan roj û dewrên ku wêjekar û neteweperwerên Osmanî li pey zindîkirina nirxên xwe yên neteweyî digeriyan û tevî qelema xwe ketibûne xizmeta zimanê Tirkî, Xelîl Xeyalî jî bi temamê hêz û şiyana xwe, mil û mêxên xwe daye ber rûgeşkirina zimanê Kurdî. Hetanî jê hatiye, berê bal û dêhna giregir, zana, maqûl û xuyaniyên malmezin ên gel kişandiye ser berhemên kevnar û nûjen ên edebî û Kurdî. Bi helwesteke xîretkêşane, bi raman û hestên gelek asofireh hemû nivîsên xwe di rojname û govarên wekî **Jîn**, **Rojî Kurd**, **Hetawî Kurd** û **Rojnameya Kurd Teavun ve Teraqî**, de piranî bi Kurdî nivîsandine.Xeyalî, di hin nivîsên xwe de gazinde jî kirine û wiha gotiye: "Kurd bi zimanê xû naxwînin, pêş bi zimanê xû nakin, zimanê me di çavê me da bê fûd e."

### Bi dîtina rewşenbîran, Xelîl Xeyalî

Xelîl Xeyalî, ji hêla rewşenbîr û zanayên serdema xwe ve jî wekî hîmekî girîng ji bo çanda kurdî dihate qebûlkirin. Şexsiyetên siyasî û bîrewer ên ku pê re têkilî danîne, serwextî fêhm û zanîna wî ya kûr bûne. Ev întîba û nêrînên xwe jî bi gelek wesîleyan anîne ziman. Em li vê derê çend numûneyan bidin:

#### Ekrem Cemîl Paşa

"Xelîl Xeyalî û Ziya Gökalp bi hev re rêziman a Kurdî amade kirine û hewl dane ku ferhengekê jî binivîsin. Lê Ziya Gökalp ji xwendingehê hatiye derxistin û dema hatiye Amedê xebatên ku wî û Xeyalî bi hev re amade kiribûn jî bi xwe re anîne û ji wê pê ve tekiliyên wî û Xeyalî hatine birrîn. Piştî Meşrûtiyetê dema ku Ziya Gökalp wekî delegeyê Amedê beşdarê "Komeleya İttihad û Teraqî" yê ya li Selanîkê dibe, Xelîl Xeyalî li Stenbolê dibîne. Xeyalî ew xebatên ku bi hev re amade kiribûn jê dixwaze, lê dibêje "min ew şewitandin" û naxwaze bide wî..."

#### Musa Anter

"Dema ku min Xelîl Xeyalî dît, ji ser hesabgiriya Fakûlteya Daristanê teqawîd bibû. Kalekî sûret-nûr bû. Tu çiqas bêjî çandiyar û ew qas jî xwedî feraset bû. Çavên wî ji eşqa welat diçilwilîn. Digot daxwaza min ew e ji Xwedê, di saxiya min de ez bibînim ku milletê kurd ji van milletên stemkar xelas bûye. Bi keça xwe Nazmiye re dijiya. Nêzî çûyîna xwe ebediyetê, xebatên xwe dane min. Di nav wan de belgeyên pir girîng hebûn. Di nav wan belgeyan de xebata Ziya Gökalp ên li ser zimanê kurdî jî hebûn..."

#### Mele Seîdê Kurdî

"Vaye ez mînakek neteweperweriyê ji we re pêşkêş dikim ku ew jî Xelîl Xeyaliyê Motkî ye. Mîna her beşek miletperweriyê di beşa ziman de jî xelata pêşbaziyê ya wî ye û elîfba û rêzimana ku bingehê zimanê me ye amade kiriye. Vî kesî helwesteke miletperweriyê nîşan daye û ji bo zimanê me yê ku pêwistiya pêşveçûnê ye, bingehek daniye. Ez ji neteweperweran re tewsiye dikim ku li pey rêça wî herin û zimanê me li ser wê bingehê ava bikin..."

#### Qedrî Cemîl Paşa

"Xelîl Xeyalî, welatparêzekî rewşenbîr û hemiyetperwer bû. Me ciwanan, vî şexsî di sala 1909'an de li Stenbolê nas kir. Ew çax temenê wî dev û dora pêncî salî bû. Rojên înê li çayxana Diyarbekir Kirathanesî ya li Divanyolê em dicivandin. Li ser dîroka Kurdistanê gelek tişt vedigotin. Dawiya suhbetên wî yên dîrokî, neteweyî û edebî ji xweşbûnê nediqediyan. Me bi eleqe, zewq û kelecaniyek bêdawî guhdar dikir û gelek tişt jê hîn dibûn... wêxtê ku ez di sala 1929'an de ji Stenbolê çûm, ew mirovê mezin û qedirbilind zêdetir nexweş ketibû..."

# Şaristanê romantîzmî Parîs

## Ez kî Charlie ya

**Nadire G. Aldatmaz**




Nameyê Parîsî ke vajîya moda, huner, kultur, romantîzm, eşq ameyêne re merdimî vîrî. Parîs ke va verê verkan şoreşê Fransa, komunê Parîsî û tabî ke serbestîye ameyêne vîra merdimî. Nê çend serranê peyênan de malesef êdî bi suîkastan, bi katlîaman qalê Parîsî beno. Ne Parîs de merdene şîkîye re be Sekîna, ne kî no suîkast şîkîya re be Parîsî. Cinîka eşqî, cinika xoverrodayîşî, cinîka aştîye, cinîka serbeste ganî şaristanê eşqî de, şaristanê mucadele de, şaristanê serbestîye de nêmerdêne. Ne bi çekanê barbaran merdene şîkîye re be karîkaturîstanê Charlie Hebdoyî ne kî qirkerdişê karîkaturîstan şîkîya re be Parîsî. Sembolê serbestîya fikran, maalesef bî mezela fikran.

Ci ra hes bikerê-mekerê, ewro welatanê Ewropaya rojawanî hetê demokrasî ra, hetê heqê merdiman ra û hetê serbestîya fikiran ra ma ra zaf zaf avêr ê. Bi "ma" qesta mi cografyaya îslamî ya. Barbariya ke alemê xirîstîyanan dewro miyanen de vinita, ewro cografyaya îslamî de hezar qat bêtera xo esta. Yanî ma înan ra 500 serrî peyser îme û 500 serranê verênanê înan ra cayode dahîna xirabin der îme. Ewro muslumanî yewbinî sere birnenê, ciniyanê ê bînan, kenayanê ê bînan, ê ke înan ra nîyê, ê ke sey înan nêfikirenê, ê ke mezhebê înan ra nîyê, ê ke cemaatê înan ra nîye, kişenê, roşenê. Kena û cinîyanê înan xo rê kenê kole, kenayanê domanan gênê nîkahê xo tecawuzê ci kenê. Kenayê ke wanenê yenê kiştene. Cinîyê ke erebe ramenê yenê girewtene, hepixaneyan de manenê. Keso ke dînê xo vurneno fînê dare... Hîna ke merdim na barbarîye bihumaro, çend rîpelî benê pirr.

Madem welatanê îslamî de hende barbarîye esta û her keso medenî naye vîneno, çaye çareyêk nêvîneno? Çaye şarê muslumanî hende bêveng o? Kitabo bimbarek yê muslumanan se vano ke no milet hende kewno têorte û yewbinî sere birneno. Gelo no kitab fam nêbeno? Gelo no kitab de emir beno ke "tim yewbînî bikişê"?. Ti vana qey no kitab bi "biwane" nê bi "bikişe" dest pêkeno. Çend kitabê bimbarekî yê muslumanan estê? Madem yew o, çaye hezar tewirî tevsîrî estê? Çayê miletî yewbinî rê kenê dişmen?

Wexto ke dêrê (kilîseyê) xirîstîyanan mîyanê sîyasetî de bî, wexto ke binê heme qereran de îmzaya dêrî bîye o wext kî tim pêrodayîş, tim gonî, tim îstirê çiman bî, dewro mîyanen yê Ewropa de. Key ke înan reform û ronesansê xo kerd temam, o wext însan avêr şî, însanîye avêr şîye. Key ke dîn sîyaset ra kewt be dûrî, key ke dîn ekonomî ra kewt be dûrî, key ke dîn nêbî wasitaya îqtîdarî o wext şar bî medenî, o wext îlmê pozîtîfî avêr şî, o wext herbî-pêrodayîşî bî kêmî.

Ewro welatanê Ewropa de kes kesî rê zor nêkeno ke şero îbadete bikero. Yan kî filan ca de îbadete bikero. Îbadete kenê-nêkenê bi keyfê înan o. Kotî îbadete kenê, çaye îbadete kenê, no kî pers nêbeno. Însano medenî nîyar o. Însano medenî çitur ke huyeno, kay keno, fetelîno, weno, şimeno, fikrîyeno winî kî yarenîye keno, henekan keno.

Parîs de çend însanî çend karîkaturîstî pîya yew kovara karîkaturan vejenê û tabî ke bi çimanê xo, bi fikranê xo qaytê dinya kenê û karîkaturanê xo kî qaytkerdîşê xo gore virajenê. Nê karîkaturî çiqas ke tayê însanan rê zaf weş ê, tayê însanan rê kî hende xirabin ê. Çike xora mantiqê karîkaturan de karîkaturîze kerdîşê taye meseleyan esto ke no kî tayîne rê weş nîno. Wexto ke her kesî rê weş biameyêne o wext o karîkatur problemin bî. No karîkaturîze kerdîşî de weçînitişê mewzuyî, durumê rojaneyî gore û fikrê karîkaturîstan gore vurîno. Ge sîyaset beno, cinî benê, camêrdî benê, ge dizdenî, xap itene, ge-gane kî bawerîye bena ... Yanî karîkaturîstî ke mewzuyanê karîkaturanê xo goreyê ê bînan weçînê nêşîkînê ke teba bivirajê. Çike her karîkatur miheqeq gineno be yew kesî ro. Yew kovara karîkaturî nêşîkîna ke yew kesî bisevekno, cîyayîye bikero. Tayîne rê winî, tayînê bînan rê winî nêbeno.

Însano medenî, însano ke însanîye ra nasîbê xo girewto, sebeb çi beno wa bibo gerek mekişo. Prensîbo bingeyin gerek no bo. Ti ke nêşîkîna seba însanîye çîyode rind bikerê, ti ke nêşîkîna seba dewamê heyatî çîyê bikerê, ti ke nêşîkîna îlîmî avêr berê, o wext qet ke nê MEKIŞE.

Mi ke nîya nuşt vengê binê goşe mi de pispisneno, vano "La emperyalîzm?", "La her çî binê sereyê welatanê Ewropa ra vejîno.", "Îsraîl?", "Amerika?" ... Nê pêro neheqîya nê barbaran, nê terorîstan qet senik nêkenê. Bedelê gunaya Amerîka yan kî yê emperyalîzmî ganî nê karîkaturîstan nêdayêne. Hadî vajîme ke gunaya rojawanî bîye û nê karîkaturîstî kî sey qurbanî amey weçînitene. Eke winî yo gunaya êzîdîyan çi ya? Gunaya Kobanê çi ya? Gunaya nasturîyan yê suryanîyan yê tirkmanan, yê ereban çi ya? Yanî kesê ke sey înan nîyê, ganî pêro bimerê? No senê dîn o? No zîhnîyet şîyo re yê Hîtlerî. Hîtlerî kî vatêne keso ke orîjînê xo alman nîyo, ganî bimiro. Hîtlerî xeylê ca de kî ê ke alman nîyê dayî be kiştene. Labelê ewro zîhnîyetê eyî leyê heme şaran de mahkum kerdo û o be lahnet yad beno.

Ewro Tirkîya de zaf kes vano ke "No dîn nîyo. Na muslumanîye nîya. Muslumanîya rastkene de kiştene çin a. Îslam dînê haştî yo." Merdimî ke nê vateyî heşnayî, rasta xo şa beno. Labelê nê vateyî tena sey vateyan manenê. Tesîrê xo malesef çin o. Key ke şaro musluman keyanê xo ra vejîya teber, key ke vejîya meydanan de zirça û va : "Vinde! Ti kam a ke bi nameyê dînî qirkena? Ti temsîlkarê mi nîya." O wext merdim îman beno ke rast a. O wext nê barbarî nêşîkînê ke herinda xo ra bilewîyê. Şaro musluman ke tuyê nînan bikero nînan bi tukerdişê xo xendekneno. La kuyo? Kam vengê xo vejeno? O Îsraîlo ke pê qayîl nêbenê de bîle bi des hezaran milet vejîya teber û seba Fîlîstînî polîtîkaya hukmatê xo protesto kerde. Îşte qebul nêkerdîş nîyar o. Çekuyê ke winî keyeyê xo de yenê vatene hem hukmê xo çin o hem kî qiymetê xo çin o. Hetê ra kî nêyê ke nîya vanê, yanî ê ke vanê "Îslamo rastken nîya nîyo." rîyê înan de maalesef merdim tenê kî memnunîyet vîîneno. Seke verê miletî de şermayenê û nîya vanê la zerrîya xo de kî vanê "Oxx!"

Serranê 1930an de ruhê faşîzm Europa de her ca de bî. Bi tewir tewir metodan îqtîdarê xo ke rind kerd qewetin der-berê Europa vêşna qedena na rey kî sire ameye cayanê bînan. Bi mucadeleya şaranê welatanê bînan faşîzm kewt be binê erdî. Labelê faşîzmê o wextî neteweyî/nasyonalîst bî, yê nikayî kî dînî yo û koka xo teberê Ewropa der a. Ez hêvîdara ke ancî bi mucadeleya şaran no faşîzm kî kewno binê erdî. Ez ancî vajî, heta ke şaranê muslumanan bi xo nê barbarî seba xo, seba ameyeyê xo tehlukeyin nêdî verê nê barbaran de mucadele nêkerde, şarê bînî tena ser nêkewnê. Her kes bizano ke nê barbarî diya de çiqas ke tesîrin bibê, çikaq ke avêr şerê, dinya hende peyser şona, însanîye hende peyser şona. Ma kenîme vîndî. Însanî kenê vîndî. Muslumanî kî kenê vîndî.

"Je suis Charlie" Ez kî Charlie ya.

# Hosteyê kedîkirina Şahmaran



Siwar Bedirxan

Paxir yek ji wan madeneya ku bi karîgeriya xwe tesîreke mezin li ser jiyana mirovahiyê kiriye û navê xwe jî daye serdemekê. Keşfa paxirê tesîr li medeniyetê jî kiriye û pêşketineke mezin li ser komelgehê kiriye. Li gor lekolînên li ber destan û amajeyên şûnnwarnasan paxir yekem car li şikeftên Erxeniya Amedê yên navendî ji mirovahiyê re kirine de hatiye bikaranîn. Bermayiyên paxirê yê ji wê demê mane derziyên dirûnê, xişt û xalên xemlê, kevçî û dewriyên xwarinê ne. Xebatên arkeologan ê li ser qaz û girên Kurdistanê jî dide îspatkirin ku paxirê ji destên hosteyên destkariyê yê axa Kurdistanê teşe girtiye.

**Sirgûna ji Cizîra Botanê**

Hasan Özcanê xelkê Mêrdînê jî yek ji wan hosteyên paxirê qedîm ê Kurdistanê ye.Mamê Hesen teşeyê dide paxirê û weke xêl û xeml dineqişîne. Hasan Özcan bi nasnav Mamê Hesen, li Mêrdîna rengîn û qedîm nêrîteya destkariya paxirê didomîne û zêdeyî 45 pênc sala ye hêmayên Rojhilata Navîn li ser paxirê dineqişîne. Çîroka Mamê Hesen weke çîroka her kurdekî ye û serboriyeke sirgûnê têde heye. Bapîrên Mamê Hesen, ji ber zilma Komara Tirkiyê, ji Cizîra Botanê derdikevin û berê xwe didin Keleha Mêrdînê li bin kelehê di maleke kevirî de bi cih dibin. Li Mêrdîna rengîn dest bi kar dikin. Binemala Mamê Hesen ji xelkên Cizîra Botanê ne, ji cihê navenda kelepora mîrnişinaya kurdan in. Ew dest bi karê destkarî û hostaya paxirê dikin. Bav û apên Mamê Hesên hemû li dikana destkariyê fêrî karê paxirê dibin û hemû dibin hosteyên paxirê û hêmayên Rojhilata Navîn li ser paxirê dineqişînin.

**Destpêka hostati**

Mamê Hesen jî bi çûyîna serdana apê xwe û bavê xwe ya li dikana destkariyê, çav li kar û hosteyiya wan dikeve û ew jî dil dide destkariya paxirê. Di dozdeh saliya xwe de li cem bav û apên xwe dest bi kar dike. Bav û apên Mamê Hesen bêhtir kevçiyan, cezweyên qehwê û sêniyên paxirî çê dikin. Mamê Hesên berkeksî wan dest bi çêkirina şahmaran û baz boraq û teyrê tawiz li ser paxirê dike. Mamê Hesen yekem kese ku li ser paxirê şahmaran çêkiriye. Mamê Hesên nerîteya ji bav û kalên wî mayê didomîne û du karên xwe jî fêrî destkariya paxirê kirine. Mamê Hesen bi çîrokên şahmaran, teyrê tavûs, boraq û Hezretî Dawid, Hezretî Alî Hezretî Meryem û Hezretî Îsa mezinbûye û wan li ser paxirê dineqişîne.



Mamê Hesen





**Gera li Amerîka û Ewrûpayê**

Şahmaranê li ser qenewîçên bûk û qîzan cih girtiye û li diwarê her maleke Kurdistanê hatiye daliqandin bi destê Mamê Hesên êdî li ser paxirê jî hatiye nexşandin û mayînde bûye. Û li bajar û welatên rojava jî belav dibe.

Destkarî û keda Mamê Hesên ji hêla Wazereta Kultur û Turîzmê ve tê ecibandin û di festivalên navdewletî de tê nîşandan. Bi vê minasebetê Mamê Hesen du cara berhemên xwe di sala 2009an de dibe Zankoya Pasifika Amerikayê û li wir pêşengeheke destkarên xwe vedike. Rayaderên Tirkiyê û Amerîkayê wî li bajarên Amerîkayê digerînin.

Mamê Hesen di çerçoveya 'Rojen Tirkiyê yên li Ewrûpa' jî, ji hêla Wezareta Kultur û Turîzmê ya Tirkiyê bo Ewrûpayê jî tê şandin. Li bajarên Genta Belçikayê,Nancya Fransayê û li bajaren Luksembûrgê jî pêşengehan vedike û hêmayên destkarên xwe yên ol, mezheb û nirxên Kurdistanê nîşanî Ewrûpayiyan dide. Mamê Hesen her sal beşdariya pêşengeha Beyoğluya Stenbolê ya Destkarên Zêrîn ê Hunerê jî dibe û berhemên xwe li wir jî nîşan dide.

**Xema destkariya paxirê û bangawazî li rayederên kurd**

Di serdana dikana Mamê Hesen de me dît ku Mamê Hesen li ser sendeliya xwe rûniştiyê û bi çakûçê şahmaraneke nû saz dike. Mamê Hesên bi germî pêşwazî li me kir û fînncanek mirra da destê me. Û dest bi serboriya xwe kir. Me wisa dizanî ku Mamê Hesenê hostayê destkariyê ye lê Mamê Hesen hostayê peyvêye jî. Weke wan çîrokbêjên şerqê dest pê dike û peyvê li hev siwar dike. Zanîna wî ya wan çîrokan tesîrê li destkariya wî jî dike û honandina destkarê wî hêsan dike.

Mamê Hesên, dixwaze rojekê destkariya xwe bibe Başûrê Kurdistanê û li bajarên Kurdistanê jî pêşengehan veke. Û destkarên Başûr nasbike û bi wan re peywendiyê deyne. Mamê Hesen gazinan ji Hikûmeta Tirkiyê dike û radigihîne ku wan ew ji bo berjewendiyên xwe bikaranîne û bi wê minasebetê ew cih bi cih gerandine. Mamê Hesen, xema mirina destkariya paxirê dixwe û bangawaziyê li rayaderên kurd dike û ji wan dixweze ku li nêrîteya destkariya paxirê xwedî derkevin û wê li ser piyan bihêlin.



# LaWje
## pira dengên Colemergê

Salih Batırhan

Muzîka kurdî weke herkes dizane, bêyî dengbêjiyê bi şiklekî balkêş ji aliyê koman ve hatiye îcrakirin û hîn jî wiha didome. Bi taybetî jî di salên 90'î de, hunermendên ku neçarî sirguniyê bûn, cihê xwe ji nivşên nû re hiştin û ew cîh jî heta astekê ji aliyê koman ve hat dagirtin. Li her bajarên Kurdistanê komên cûrbecûr li ser muzîkê kar dikin û muzîka kurdî ne tenê li metropolên Tirkiye'yê û bajarên mezinên Kurdistanê lê li bajarok û navçeyên din jî bi geşbûn tê îcrakirin. Koma Lawje jî komeke ji vê bêşê ye ku li Colemergê çavên xwe li dinyayê vekirine û dengê wan ji Colemergê pir dûrtir çûye û her dûrtir jî diçe.

Di salên dawî de her çend gelek kes û komên ku muzîka modern a kurdî çêdikin derketibin jî kes û komên ku li ser muzîka qedîm dixebitin gelek kêm in. Koma Lawje jî yek ji wan koman e ku li ser muzîka qedîma kurdî kar dike. Lawje'yê gelek lawij û heyranokên herêma Colemergê berhevkirine û di sala 2013'an de albumek jî derxistine. Ji bo xwînerên Basnûçeyê em bi Ali Tekbaşê endamê Lawjeyê re di derbarê kar û xebatên wan de axivîn.

**Koma Lawje çawa pêk hat? We kenge dest bi xebatên xwe kir? Hûn dikarin Lawjeyê bo xwînerên rojnameya me bidin nasîn?**

Em li Colemergê hatin din ûem hevalê hev ê zarokatiyê ne. Koma me ji sê kesan pêk tê. Ez Ali Tekbaş, Ali İmran Erin û Serhat Bostancı jî din av koma me de cih digrin. Ji sala sala 1998'an ve em hevdû nas dikin. Em digel Bülent Çetin û Serdar Özdinç jî li ser berhevkirin Û tomarkirinê xebitîn. Wan di 2003'an de li bi navê Eyhok albumeke muzîkê ya li ser herêma Colemergê derxistibû. Piştî sala 2012'an me dest bi karê albûmekê kir. Ya rast ku ez bejim Lawje ji dîwaneke mezin pêk tê. Em di dîwanê de mêvan in. Lê belê em gellek muzîkjen û hevalên xwe jî di diwana Lawjeyê de dikin mêvan.

**Wisa dizanim ku we gellek gotin û lawijên herêma Hekarê berhev kirine. Li Hekarê tenê kurd nînin. Weke mînak asûrî û ermenî jî hene. Di kêliya berhevkirinê de hûn li gotin û stranên wan jî rast hatin?**

Belê... belêê... di repertuara Colemergê de gellek formên wisa hene. Yek ji wan jî strana Nîrecot e. Nîrecot bi asûrî û kurmancî tê hatiye xwendin. Ev stran awêneyek e ji jiyana asûrî û kurdan. Dema me stran lawij û heyranok berhev dikirin em li gellek formên wisa rast hatin. Di xebatên xwe yên pêş de em ê wan jî bixwînin.

Em wisa bawer dikin ku jiyana bihevre ya kurd û asûriyan tesir li wê yekê kiriye ku muzîkên wan jî bihevre bin. Ji xwe dema em li erdnîgariya Colemergê dinêrin em dibinin ku Colemerg weke pirakê ye. Peywedniya wê bi hemû herêmên kurd re heye. Û nêzîkî kultura ereb û farisa ye. Tu bike neke tesîra muzîka wan kultura li ser Colemergê bûye. Gellek tiştên hevbeş derketine holê.

**Niha di nava xelkê Colemergê de kîjan maqam û formên muzîkê hene? Li ser muzîka hevçerx a Colemergê jî xebatên we hene?**

Belê em li ser wan jî radiwestin. Mesele di dawetên Colemergê de form û maqama Narink û Serşo heye. Di dema çûn û hatinan zozanan jî de forma Pîrêpayîzok heye. Weke din ku ez bejim di dema geşbûna dawetê de maqama Stranên Dawetê heye

Yekemîn albûma we Selîqe bû. Di Selîqeyê de cûrbecûr rîtmên muzîka kurdî tê de hebûn. Hem qesîde û hem folklor we ev yek çawa pêkanî?




Di albuma Selîqeyê de di repertuara Selîqeyê de me xwest em bêhtir bale bikşînin ser muzîka qedîm a Colemergê. Em li ser mînakên heyî sekinin. Di muzîka mirnişîniya Colemergê de ev rengînî hebû. Ew dewlemendî û rengîniya Selîqeyê jî dibe ku ji wê yekê tê. Bersiva pirsa duyemîn jî di neheniya şîrovekirina muzîkê deye. Yek ji meseleyê jî bikaranîna teknîkî ya deng e. Belkî jî, ji tesîra dengbejiyê û be. Di kelepora dengbejiyê de ev yek heye. Tu lê dinêrî bi kêliyê re rîtm û maqam diguhere li cem wan.



**Di salên 1990'î de di muzîka kurdî de gellek kom û kes derketin pêş û wan kesan gellek berhemên baş jî anîne pê. Ew kes bêhtir li ser muzîka modern xebitin. Hûn bereksî wan dikin û berê xwe didin kelepora kurdî û dengbêjiya kurdî. Gelo çima?**



Du sedemên vê yeke hene. Yek jê ji ber rewşa polîtîk bû. Yanî belkî zede xema muzîkê nedihat xwarin, xema peyamên dihatin vedigotin dihat xwarin. Sedema din jî koça ber bi metrpolan vebû. Dibe ku tesîra muzikjênên bajarî li ser muzîkjen û hunermendê kurd çebûbe. Mirov dikare vê yeke bi çend awayan eşkere bike. Hewceye jî bi rastî. Xema Lawjeyê jî muzîka xwemalî ya kurdî ye. Kêliya ku me bi vê mebestê dest pê kir, me dît ku ji bo em bigihînin rehên xwemaliya muzîka kurdî hewcebû me kelepor û kultura xwe jî nasbikra û ew jî derxista hol ê. Piştî demekê me dît ku ev kar bûye armanca me. Ji ber vê hindê em gellekî li ser dengbêjan û keresteyên folklorê disekinin.

**We bere xwe daye destanan jî,di Selîqeyê de Destana Ehmedê Silivî û Xecê jî heye. We ew bi awayekî din şîrove kiriye û we Xecê derxistiyê pêş çima gelo?**

Muzîka kurdî li ser destanan û gotinên destanan avabûye. Destana Ehmedê Silîvî yan jî Siyabendî Silîvû Xecê li hemû Kurdistanê berbelavbûye. Li Colemerga me jî ev destan ji hêla dengbêjan ve hatiye xwendin. Ez ê bem ser meseleya Xecê... Xecê kedeke mezin û berxwedaneke hêja daye. Keda Xecê bi keda jinên kurd re jî ve girêdayiye. Xecê jî di ber soz û peymana xwe de di ber işqa xwe de ked u fedakarî daye. Nabe ku em van berhmên dîrokî nebinin û li ser wan nexebitin. Çîroka Siyabend û Xecê tesîreke mezin li ser me kiriye.

**Xebatên we yên nû hene? Yan jî bernameyên we yên nû hene?**

Muzîkên fîlmên Were Denge Min me çêkir. Ew ê di demeke nêz de bi awayekî dijital belav bibe. Helbesteke Biro Omerî jî heye di wê albumê de. Me helbestek wî jî xwendiye. Me des bi repertuara albuma duyemîn jî kiriye ew jî hêdî hêdî dikemile. Em ê xebatên xwe bidomînin.